

# BUROYA KURDÎ

# ya Pêwendî û Agahdariyê

**Bultena agahdariyê N° 137 - Îlon 2016**
Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 – 047 897 882
www.kurdishbureau.be kurdishbureau@scarlet. **www.facebook.com/bureaukurde**
http://en.calameo.com/accounts/3601834

# ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ

*TEBAX 2016*

***20. 08. 2016 : Konfêransa PDKÎ***

Bi hinceta 71mîn sersaliya avakirina xwe, **Partî Dêmokratî Kurdistana Îranê** (PDKÎ) li bajarê Gentê konfêransek li ser dîroka xwe û rewşa nuha ya Kurdistana Îranê pêk anî. 3 konfêransker tê de peyivîn û piştre temaşevanan pirs ji wan pirsîn. Muzîkvanan lîzt û stranên niştimanî yên kurdî stiran. Di navberê de, rêsêpsyonek (xwarineke sivik) ji jimareke girîng ji temaşevanan re hat pêşkêş kirin. Hewa gelek hêsa û germ bû.

***24. 08. 2016 : Roja lêgerînê ya Foyer***

Çalakvaneke **Brussel Onthaal** (Bruxelles-Accueil), ku beşek ji rêxistina **Foyer** ye, ji wergêrên (tercuman) ji netewahiyên cihê re **mercên pêşwazîkirina penaberan** ravekirin : sazende, yasa (qanûn), mercên hatinê, belgeyên rûniştinê, kartên kar, statuyên mayînê û **BEŞDARBÛNA ÇALAKIYÊN RÊXISTINÊN DIN** stendina netewahiya beljîkî. Yasaya yekemîn li ser vê babetê di 15.12.1980 de hati bû derxistin.

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

*TEBAX 2016*

## KURDISTANA TIRKIYÊ

**ÊRÎŞ LI DÎLOKÊ (ANTEP) : JI 50 KUŞTÎ BÊTIR!**

***Di 20 Tebax 2016 de***, di dawetekê de, li Dîlokê, li Kurdistanê, êrîşeke xwekuj ji aliyê zarokekî 12-14 salî hat kirin! Ji 50 kuştî bêtir bûn! Serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan daxuyand (îlan kir) ku ew karê Dewleta Islamî bû.

Tawanbarkirin û peyamên serxweşiyê tavil (pirr zû) ji aliyê serok û berpirsiyarên dewletên cihê hatin şandin : Mesûd Berzanî, serokê Kurdistana Iraqê; John Bass, balyozê (sefîr) Amerîka li Ankara; Vladimir Putin, serokê Rûsya; François Hollande, serokê Fransa û partiyeke Kurdistana Tirkiyê, PAK.
*(rudaw.net, 21.08.2016)*

**TECRUBEYA DARBEYA LEŞKERÎ LI TIRKIYÊ (DUMAHÎK)**



***Mîtîngek li Istanbulê bê partiya kurdî "HDP"***

***Di 07 Tebax de***, piştî **tecrubeya darbeyeke leşkerî di 15 Tîrmeh 2016 de** (li bultena me ya buhurî binêre), û li ser xwestina serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan, li Is-

tanbulê mîtîngek bi navê "Mîtînga Dêmokrasî û Şehîdan" hat kirin. 3 partiyên sereke yên tirkî, AKP, CHP û MHP, beşdarî wê bûn. Lê partiya kurdî HDP ne hat vexwendin. Ji milyonek kes bêtir beşdar bû bûn.

***Di heman rojê de***, hev-seroka HDP, Figen Yüksekdağ, daxuyand ku lihevkirinek di navbera van partiyan de ewê nikaribe bê beşdarbûna Kurdan bi ser keve.
*(rudaw.net, 07.08.2016)*

***38.000 girtiyên cinayetan tên azad kirin***
Hukûmeta tirkî 38.000 girtiyên cinayetan (ên ne siyasî), ku ji wan re ji 2 mehan kêmtir ceza maye, azad kirin. Ev yek, ji bo ku 15.000 kesên ku piştî tecrubeya darbeyeke leşkerî hatin ragirtin ciyê wan bistînin, ji bo ku li zîndanan cî ne mane.
*(Rudaw.net, 17.08.2016)*

***26 karmendên zîndana Diyarbekirê tên ragirtin***
Di çarçeveya vekolîna (ankêt) li ser tecrubeya jorîn a darbeyeke leşkerî de, 26 karmendên zîndana Amedê (Diyarbekir) hatin ragirtin. Ew bi endambûna koma "Cemaet" Fetuhuhhal Gülen hatine gûman kirin.
*(rudaw.net, 21.08.2016)*

***Tevgerên polîsî li bal partiyên kurdî***
Ji dema ku hukûmeta tirkî rewşa awarte (istisnaî) daxuyand, damezraneke yasayî li dijî Gülen hat bi cî kirin. Di rojên dawîn de, tevgerên polîsî li bal partiyên ramyariyî yên kurdî, HDP û DBP, hatin kirin.

Alîkarê serokê barroya Amedê, Ahmet Özmen, got ku rewşa awarte bixwe pelixandineke mafên mirov e, ku serokên partiyên kurdî yên jorîn bitenê li ser bingeha pêşbînî û gûmanan hatine ragirtin û ku parêzerên wan nikarin xwe bigihînin dosyên wan.

Parêzerekî din, Yakup Demir, ku hin birêvebirên partiya DBP diparêze, ji ajansa Rûdawê re got ku piştî daxuyandina rewşa awarte, 24 ji van berpirsiyaran 13 rojan hatin bin çav kirin.
*(rudaw.net, 26.08.2016)*

***Fermandarê jandarmeya Şirnexê tê ragirtin***
Di çarçeveya vekolîna li ser Gülen de, dozkarê (prokuror) komarê ferman da binçavkirina fermandarê jandarmeya Şirnexê, li Kurdistanê, Sami Özturhan. Birêvebiriya ewlehiya Şirnexê ew ragirt û nuha jêpirsîn dike.
*(rudaw.net, 27.08.2016)*

***Encumeneke vekolînê li Kurdistana Iraqê***
Li Hewlêrê zanîngeheke Fethullah Gülen, bi navê Işık (Ronahî), heye. Piştî êrîşa Istanbulê, wezareta perwerdeya bilind û lêgerînên zanyariyî ya Herêma Kurdistanê dest bi vekolînekê li ser vê zanîngeha ku ji 22 salan de heye kir. Nêzîkî 15.000 xwendekar tê de dixwînin.
*(rudaw.net, 21.08.2016)*

***Almanya : Piştî 20 salan, Tirkiye dikare bikeve nav Yekîtiya Ewropî***
Sigmar Gabriel, cîgirê serokwezîrê almanî û serokê partiya sosyal-dêmokrat SPD, ji kanala têlêvîzyona almanî ARD re daxuyand ku ew li dijî rawestandina giftûgoyên bi Tirkiyê re, li ser daxwaziya wê ku bikeve nav Yekîtiya Ewropî, ye û ku dibe ku ew piştî 20 slan bibe endama wê. Û wî got jî ku eger Tirkiye ji nuh de hukmê îdamê pêk bîne, ewê giftûgoyên pê re biguherin.

Ji aliyê xwe, serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan ji rojnameya fransî Le Monde re daxuyand ku eger Yekîtiya Ewropî farzkirina vîza li ser welatvanên Tirkiyê raneke, ewê lihevkirina wê pê re, li ser penaberan, bê rakirin (ilga kirin). Û wî helwesta "passîf" a Yekîtiya Ewropî li ser tecrubeya darbeya leşkerî li Tirkiyê, di 15 Tîrmeh 2016 de, rexne kir.
*(rudaw.net, 08.08.2016)*

***Amerîka : Ne Gülen û Tirkiye***
Birêvebira buroya agahdariyê ya wezareta amerîkî ya karên derve, Elizabeth Trudyaw, li konfêranseke çapemeniyê daxuyand ku li ser radestkirina Fethullah Gülen ji Tirkiyê re, ewê Amerîka berpirsiyariya xwe hilgire, lê ku ew ne aliyê Gülen û ni jî yê Tirkiyê digire. Ev yek, ji bo bersivdayîna xwestina serokewezîrê tirk ku Amerîka yek ji van herduyan bibijêre.
*(rudaw.net, 12.08.2016)*

***Gülen : Ezê bi mercekî (şert) vegerim Tirkiyê!***



**Fethullah Gülen**, ku bi amadekirina vê darbeya leşkerî tê tawanbar kirin û ku li Amerîka dijî, di rojnameya fransî Le Monde de nivîsî ku ew amade ye ku ew vegere Tirkiyê, eger encumeneke navneteweyî ya lêgerînan bê pêk anîn. Û wî got jî : *"Eger ew ji nav bi dehan tawanbariyan li dijî min yek peyt (isbat) bikin, ez sond dixwim ku ezê vegerim Tirkiyê".*

***Di 12 Tebax de***, wezîrê tirk ê karên derve, Mevlut Çavuşoğlu, daxuyand ku welatê wî şandina belge û peytan ji Amerîkara re dajo (dewam dike), ji bo ku ew

karibe wî vegerîne Tirkiyê. Bi ser de jî, dozkarê komarê yê bajarê Adana biryar stend ku dest deyne ser hebûnên (mulk) Gülen.
*(rudaw.net, 12.08.2016)*

**DÛMAHÎKA ŞERRÊ DI NAVBERA LEŞKERÊ TIRKÎ Û PKKê DE**

***Şemzînan, girêdayî Colemêrgê***
***Di 01 Tebax 2016 de***, parêzgarê Colemêrgê (Hakkari) 3 rojan qedexekirina hatûçûnê li gundê Altınsu û mezrea Incesu daxuyand.

***Di 18 Tebax de***, PKKê êrîşî avahiya birêvebiriya ewlehiyê kir. Piştre, pevçûn bûn û polîsek birîndar bû. Tevgereke mezzin dest pê kir.
*(rudaw.net, 01,18.08.2016)*

***Di 23 Tebax de***, bombeyek li ser erebeyeke leşkerî, li nêzîkî buroya jandarmeya Yeşilova, teqiya. 3 serbaz bi giranî birîndar bûn.
*(rudaw.net, 23.08.2016)*

***Di 28 Tebax de***, PKKê êrîşî serbazên tirk li Rûbarokê, girêdayî Şemzînanê, kir. 2 serbaz birîndar bûn û 4 PKK hatin kuştin.
*(rudaw.net, 28.08.2016)*

***Dersîm (Tunceli)***
***Di 01 Tebax de***, bingeha jandarmeyên gundê Pakirayê, ya bajarokê Xozatê, ku girêdayî Dersîmê ye, ji aliyê kesên nenas hat êrîş kirin. 2 serbaz û 1 sîvîl birîndar bûn.
*(rudaw.net, 01.08.2016)*

***Di 22 Tebax de***, nêzîkî demjimêr 4, a serê sibê, komeke PKKê êrîşî bingehên ewlehiya tirkî, li nahiya Qislê, ya bajarê Dersîmê, kir. 2 PKK û 1 serbaz hatin kuştin û 3 polîs birîndar bûn. Parêzgar qedexekirina hatûçûnê li Qislê, heta fermaneke nuh, daxuyand.
*(rudaw.net, 22.08.2016)*

***Di 24 Tebax de***, êvarê, firoke û hêlîkoptêrên leşkerî dest bi bombekirina hergavî (daimî) ya Dersîmê kir. Riyên ku digihînin Pilemor û Ezirganê hatin girtin.
*(rudaw.net, 25.08.2016)*

***Mûş***
***Di 01 Tebax de***, erebeyeke polîs li ser riyha Mûş-Çewlikê hat êrîş kirin. 2 polîs birîndar bûn. Hêzên ewlehiyê dest bi tevgeran kir.
*(rudaw.net, 02.08.2016)*

***Çewlik (Bingöl)***
***Di 01 Tebax de***, erebeyeke hêzên taybetî yên polîs li ser riya firokexaneyê hat êrîş kirin. 6 polîs hatin kuştin û 4 birîndar bûn.
*(rudaw.net, 02.08.2016)*

***Amed (Diyarbekir) û Sur***
Parêzgarê Amedê qedexekirina hatûçûnê li 14 gundên ku girêdayî Harzo, Farqîn û Licê ne daxuyand. Ev yek piştî tevgerên leşkerî ji bo têkbirina bingehên PKKê. Ev qedexekirin di 24 Tebax de hat rakirin.
*(rudaw.net, 03,27.08.2016)*

***Di 02 Tebax de***, bi şev, PKKê êrîşî hêzên ewlehiyê yên Yenişehirê, girêdayî Amedê, kir. 3 polîs û 1 PKK birîndar bûn.
*(rudaw.net, 03.08.2016)*

Erebeyeke bombekirî li taxa Surê teqiya. 4 sîvîl hatin kuştin û 4 polîs birîndar bûn.
*(rudaw.net, 10.08.2016)*

***Di 15 Tebax de***, teqîneke mezzin li Çinarê, li ser riya Amed-Mêrdînê, bû. 2 polîs û 1 zarok hatin kuştin û 8 polîs û 25 sîvîl birîndar bûn.
*(rudaw.net, 15.08.2016)*

Li Licê, PKKê êrîşî leşkerê tirkî kir. 4 serbaz hatin kuştin û 8 birîndar kirin. Qedexekirina hatûçûnê li 14 gundên Amedê hat daxuyandin.
*(rudaw.net, 24.08.2016)*

***Di 27 Tebax de***, qedexekirina hatûçûnê li 6 taxên Surê hat rakirin, lê ew hîn jî li hundirê bajar maye. Ew ji Kanûn 2015 de hati bû farz kirin. Lê ji rojnamevanan re ketina nav wan hat qedexe kirin.
*(rudaw.net, 28.08.2016)*

***Di 31 Tebax de***, parêzgarê Amedê qedexekirina hatûçûnê li 13 gundên Amedê daxuyand. Wî got ku ewê ev qedexekirin heta fermaneke nuh bajo (dewam bike) û ku sedema wê derxistina PKKê ji vê navçeyê û têkbirina (xerabkirin) bingehên wê ye.
*(rudaw.net, 31.08.2016)*

***Gever (Yüksekova), girêdayî Colemêrgê***
***Di 04 Tebax de***, bombeyek li ser erebeyeke leşkerî, li ser riya Omerarê, teqiya. Efserek (zabit) birîndar bû.
*(rudaw.net, 24.08.2016)*

***Di 24 Tebax de***, PKKê êrîşî erebeyeke din a polîs kir. Qedexekirina hatûçûnê ji bo 3 rojan hat daxuyandin.
*(rudaw.net, 24.08.2016)*

***Navçeya Mêrdînê***
Qedexeya hatûçûnê ji 14 Adar 2016 de li ***Nuseybînê*** dajo. Piraniya rûniştevanên wê ber bi gundên hevsî (cîran) reviyan û li bin konan dijîn. Ew ji nebûna alîkariyê ji aliyê hukûmet û rêxistinên mirovî gazin dikin.

***Di 12 Tebax de***, demjimêr 7 a serê sibê, pevçûn di navbera PKK û polîsê tirkî de, li ***Nuseybînê,*** bûn. 1 polîs û

2 PKK hatin kuştin. Tevger li navçeyê dajon. *(rudaw.net, 06,12.2016)*

Erebeyeke polîs li hemberî nexweşxaneyekê, li **Kızıltepê**, teqiya. 2 kes hatin kuştin û 50 birîndar kirin. *(rudaw.net, 10.08.2016)*

***Di 21 Tebax de***, qedexekirina hatûçûnê li 8 taxên bajarokê ***Stewr***ê hat daxuyandin. *(rudaw.net, 21.08.2016)*

***Semsûr (Adıyaman)***

***Di 09 Tebax de***, bi şev, cerdevanek (mîlîsên kurd ku bi dewelta tirkî re, li dijî PKKê, hevkarî dikin), Yusuf Sönmez, li gundê Çamlıçayê hat kuştin. *(rudaw.net, 09.08.2016)*

***Qilaban, girêdayî Şirnexê***

Traktoreke ku kelepûr (tiştên pêwîst) ji serbazên tirk re dianî teqiya. Ajo (şoffor), Şivan Alkın, hat kuştin. *(rudaw.net, 09.08.2016)*

***Cizîr, girêdayî Şirnexê***

***Di 26 Tebax de***, erebeyeke bombekirî li ber birêvebiriya polîs teqiya. 11 polîs hatin kuştin û 78 kes, ku ji wan 3 sîvîl û 75 polîs, birîndar bûn. Avahiya polîs, firoşgeh (dikkan) û xaniyên derdorê gelek têk çûn (xerab bûn).

Hêzên Parastina Gel (HPG), ku girêdayî PKKê ne, daxuyand ku 118 polîs (ne 11) di vê êrîşê de hatin kuştin. *(rudaw.net, avestakurd.net, 26,27.08.2016)*

***Şirnex***

***Di 12 Tebax de***, bi şev, komeke PKKê hatûçûna erebeyan li ser riya bajarokê Elkê, yê girêdayî Şirnexê, qedexe kir, serokê beşa cuhanên şaxa Elkê, ya partiya tirkî ya desthilatê "AKP", Naci Adıyaman, û birayê wî Fikret Adıyaman, revandin û erebeya wan şewitand. Di heman rojê de, di demjimêr 14 de, laşê Naci Adıyaman li kîlomêtrekê dûrî ciyê revandinê hat dîtin. Leşkerê tirkî tevgeran, ji bo dîtina birayê wî Fikret, dike.

Heta nuha, PKKê tu daxuyanî li ser vê yekê ne kir. *(rudaw.net, 13.08.2016)*

***Bazîd, girêdayî Agirî***

***Di 14 Tebax de***, PKKê êrîşî buroya polîsê Bazîdê kir. Pevçûn derketin û hatûçûn li navçeyê hat qedexe kirin. *(rudaw.net, 15.08.2016)*

***Wan (Van)***

Bombeyek li navenda polîsê bajarê Wanê teqiya. Ji kêmasî ve 20 kes, ku ji wan sîvîl, birîndar bûn. *(rudaw.net, 18.08.2016)*

***Di 25 Tebax de***, du navendên ewlehiyê yên tirkî li Wan û bajarokê Hermûşê hatin êrîş kirin. 2 polîs û 2 sîvîl birîndar bûn. Tevgereke leşkerî ya mezzin dest pê kir. *(rudaw.net, 26.08.2016)*

***Xîzan, girêdayî Bedlîsê (Bitlis)***

Pevçûn di navbera PKK û leşkerî tirkî de derketin. Cerdevanek hat kuştin û serbazek birîndar kirin. Piştre, bombeyek li ser erebeyeke leşkerî teqiya. 3 serbaz hatin kuştin û 6 birîndar kirin. Tevgereke mezzin a leşkerî dest pê kir. *(rudaw.net, 18.08.2016)*

***Elazîz (Elaziğ)***

***Di 18 Tebax de***, erebeyeke bombekirî li ser buroya polîs teqiya. 3 polîs hatin kuştin û 170 kes birîndar bûn. Ew teqîn çend demjimêr piştî teqîneke din, ku tê de 3 kes kuşti bûn, bû. Roja din, PKK xwedî lê derket û got ku ev bersîveke tevgera leşkerî ya tirkî li Licê bû. *(rudaw.net, 18,20.08.2016)*

***Xarpêt (Harput)***

***Di 18 Tebax de***, mînîbuseke bombekirî li ber birêvebiriya ewlehiyê teqiya. 3 polîs hatin kuştin û 217 kes birîndar kirin.

Serokwezîrê tirk, Binali Yıldırım, fermandarê leşkerê tirk, wezîrên parastin, saxî û siyaseta civakî çûn wê derê. Bi ser de jî, şandeke partiya tirkî ya dijberiyê, CHP, jî çû. *(rudaw.net, 18.08.2016)*

***Elih, girêdayî Dersîmê***

***Di 24 Tebax de***, hatûçûn li 6 gundên bajarokê Sasonê, yê girêdayî Elihê, hat qedexe kirin. Piştre, tevgereke leşkerî li navçeyê dest pê kir. Ev qedexekirin di 25 Tebax de rabû.

Di 16 Tebax 2015 de, vê qedexekirina hatûçûnê li gelek navçeyên Kurdistanê dest pê kiri bû. *(rudaw.net, 25,27.08.2016)*

***Riya Artvin-Şavşatê***

***Di 25 Tebax de***, erebeya serokê partiya tirkî ya dijberiyê CHP, Kemal Kılıçdaroğlu, ji aliyê Hêzên Parastina Gel (HPG), ku girêdayî PKKê ne, hat êrîş kirin. Wan got ku wan nizani bû ku ev serok di derebê de bû, ji bo ku wan kemînek li ber karwaneke leşkerî danî bû û bawer dikir ku ev erebe beşek jê bû. *(rudaw.net, 26.08.2016)*

***Diha, girêdayî Sêrtê (Siirt)***

***Di 28 Tebax de***, mînek li ser mînîbuseke cerdevanan (mîlîsên kurdî ku hevkariya leşkerê tirkî, li dijî PKKê, dikin) teqiya. 5 cerdevan birîndar bûn. Boriyeke av teqiya. *(rudaw.net, 28.08.2016)*

***Riya Colemêrg-Wanê***
***Di 28 Tebax de***, mînek li ser karwaneke leşkerî teqiya. 1 serbaz hat kuştin û 3 jî birîndar kirin.
*(rudaw.net, 28.08.2016)*

***Di 30 Tebax de***, bombeyeke din li ser erebeyeke polîs teqiya. Zarokek birîndar bû.
*(rudaw.net, 30.08.2016)*

***Kurdistana Iraqê***
***Di 29 Tebax de***, êvarê, du firokeyên leşkerî bingehên PKKê li navçeyên Avaşîn û Basya, li nêzîkî Duhokê, bombe kirin. Ji Tîrmeh 2015 de, firokeyên tirkî sînorên Kurdistana Iraqê bombe dikin, ji bo ku tê de li dû PKKê biçin. Gelek bexçe û daristan şewitîn.
*(rudaw.net, 30.08.2016)*

**NELIHEVKIRIN DI NAVBERA "HDP" Û "PKK"ê DE**
Cemil Bayık, hev-serokê encumena birêvebir a KCKê (Komela Civaka Kurdistan), ku girêdayî PKKê ye, daxuyand ku ji nuha û şûn de ewê şerr li herderî, li deştan, li çiya, li bajaran … bibe.

Selahettin Dermirtaş, hev-serokê partiya kurdî ya yasayî (lêgal, şer'î), HDP, di rojnameya tirkî Cumhuriyyetê de bertek (réaction) da van gotinan. Wî got ku partiya wî napejirîne (qebûl nake) ku şerr li bajaran bibe û ku tiştê herî pêwîst ew e ku PKK bangî aşîtiyê bike.
*(rudaw.net, 10.08.2016)*

**PIŞTGIRIYA RÊXISTINÊN MIROVÎ JI "HDP" RE**
Gelek sendîka û rêxistinên mafên mirov li Tirkiyê piştgiriya xwe ji Selahettin Demirtaş re nîşan da û ji PKK û KCKê xwest ku nema bibin sedema mirina sîvîlan.
*(rudaw.net, 12.08.2016)*

**BANGA 61 KESAHIYAN**
61 parêzer, karsazên jin û mêr, akadêmîk, nimînende (temsîlcî) û serokên rêxistinan, ên tirk û kurd, bangî hem hukûmeta tirkî û hem PKKê kir. Wan ji PKKê xwest ku şerr rawestîne û ji hukûmetê ku gavek ber bi dyalogê bavêje.
*(rudaw.net, 23.08.2016)*

**ÊRÎŞ LI DIJÎ BUROYÊN "HDP"**

***Istanbul***
***Di 11 Tebax de***, berê berbangê, bi piştgiriya hêlîkoptêr û tankan, hêzeke taybetî ya polîs tevgerek li avahiya partiya kurdî HDP li Istanbulê, ku ji 5 qatan pêk hatiye, kir. Wê tê de hertişt têk bir (xerab kir) û talan kir, hemî arşîv û belgeyan birin û gotinên nijadparêz li ser dîwaran nivîsîn. 17 kes hatin bin çav kirin.

Hev-serokê HPD, Selahettin Demirtaş, got ku ev polîs weka *"gangster"* (canî, qatil) bûn.



Tevgerên weha li buroyên HDP li 15 navçeyan bûn. Li Mêrdîn û Diyarbekirê, 9 kes hatin kuştin.
*(rudaw.net, 12.08.2016)*

***Xarput (Harput)***
***Di 18 Tebax de***, piştî bangên li ser torên civakî yên entêrnêtê, kesên nenas êrîşî buroya HDP kir û ew talan kir.

Ev tevger piştî êrîşeke ku di heman rojê de li hemberî buroya ewlehiya tirkî bû bû. 3 polîs hatin kuştin û nêzîkî 150 birîndar bûn.
*(rudaw.net, 18.08.2016)*

***Ji 2015 de, 134 zarok li Tirkiyê hatin kuştin***
Rêxistina tirkî ya lêgerînên li ser zarokan, Gündem Çocuk, rapporek weşand û tê de got ku ji Hezîran 2015 de, li Tirkiyê 134 zarok bûne qurbanên teqîn û şerran. Wê tê de desthilatên tirkî bi nekirina ramyareke (siyaset) xurt ji bo parastina wan tawanbar (bi sûc) kir.

Li gora vê rapporê, ji sedema nebûna ewlehiyê (emniyyet) li kuçan, malbat zarokên xwe li malê dihêlin û ev yek bandor (te'sîr) li ser derûna (psîkolojî) wan dike. Evrim Baykondu, psîkolog û endama Rêxistina Mafên Mirov li Tirkiyê (IHD), got ku bê piştgiriya dewletê, rêxistin nikarin zarokan biparêzin û ku ew di şerran de, li ciyên ku ew bi rêkewt (bi tesadufî) tê de ne, tên kuştin.
*(rudaw.net, 26.08.2016)*

**XWESTINA GIRTINA DEMIRTAŞ Û ÖNDER**
Piştî rakirina parêzbendiya (nedestdanîn) ya parlementerên kurd ên partiya HDP (li bultenên me yên berê binêre), dozkarê Bakırköyê 5 sal zîndan ji bo Selahettin Demirtaş û Sırrı Süreyya Önder xwest. Ew bi "propaganda têrrorîst" hatine tawanbar kirin, ji bo ku wan di 2013 de pesna serokê PKKê, ku li zîndanê ye, Abdullah Öcalan, da bû.
*(rudaw.net, 12.08.2016)*

**DU HEV-ŞAREDARÊN HDP TÊN RAGIRTIN**
Hev-şaredara Hezexê, Nevin Oyman Girasun, û ya Pasûrê (girêdayî Amedî), Sadiye Surer, û 6 berpirsiyarên partiya kurdî HDP, hatin ragirtin.
*(rudaw.net, 16.08.2016)*

**YASAYEKE NUH JI BO RAGIRTINA ŞAREDARAN**
Hukûmeta tirkî nuha yasayeke nuh, bi navê "Kayum", amade dike, ji bo ragirtina şaredarên partiya kurdî HDP û danîna kesên din li ciyê wan.

Li Amedê (Diyarbekir), 72 rêxisinên civaka sîvîl bi daxuyaniyekê ev yasa riswa (protêsto) kir. Ew neçar (mecbûr) bûn ku vê tevgerê li hundirê barroya Amedê bikin, ji bo ku kirina çalakiyan li derve qedexe ye.
*(rudaw.net, 18.08.2016)*

**ROJNAMEYEKE KURDÎ TÊ GIRTIN**
8mîn dadgeha cezaî ya Istanbulê biryar stend ku rojnameya "Özgür Gündem"ê, ji bo kirina propaganda PKKê, bigire û 24 rojnamevanên wê ragirtin. Mêdyayên serbixwe yên Tirkiyê piştgiriya xwe ji vê rojnameyê re nîşan da.
*(rudaw.net, 16 û 17.08.2016)*

**5.000 KURDÊN TIRKIYÊ PENA DIBIN KURDISTANA IRAQÊ**
Ji sedema şerrê li Kurdistana Tirkiyê, ji 5.000 Kurd bêntir li Kurdistana Iraqê pena bûn (iltica kir). Hin ji wan ji 20 salan bêtir de li wê derê ne, lê hîn jî wan netewahiya iraqî ne stendiye. Ji 22 salan de, 4 kamp ji bo van penaberan li parêzgeha Duhokê, li Bakurê Kurdistana Iraqê, hatine vekirin.

Dê û bavên zarokên ku li van kampan mezzin bûne dibêjin ku heta dawiya xwendina xwe, ev zarok neçar (mecbûr) bûn ku kar bikin, ji bo ku ew ji netewahiya (cinsiyyet) iraqî bêpar (mehrûm) in.

Li gora destûra bingehî ya iraqî, biyaniyên ku ji 10 salan de li Iraqê kar dikin dikarin netewahiya iraqî bistînin, lê ku ew yek li ser penaberên ji Kurdistana Tirkiyê nayê bi cî anîn.
*(rudaw.net, 04.08.2016)*

**PENABERÊN MISILMAN JI YÊN YEZÎDÎ BAŞTIR TÊN LÊ NÊRÎN**
Navenda Tendurustiyê (saxiyê) ya partiyên ramyariyî (siyasî) û rêxistinên kurdî ku nêzîkî PKKê ne, KCD, DBP, HDP û SES, konfêranseke çapemeniyê li Odeya Bijîjkên (doktor) Amedê (Diyarbekir) pêk anî. Parlementer Feleknas Uca tê de got ku penaberên sûrî ku reviyan Tirkiyê li kampan servîsên tendurudstiyê distînin, lê penaberên yezîdî ku ji Şingalê reviyan ji van heman (eynî) servîsan ewqas kelk nagirin (istifade nakin). Wê ev yek pelixandina mafê jiyanê bi nav kir.
*(rudaw.net, 24.08.2016)*

**RAPPORA FÎZÎKNASÊN JI BO MAFÊN MIROV**
Rêxistina navneteweyî "Physicians for Human Rights" (PHR), ango Fîzîsyenên ji bo Mafên Mirov, ku Xelata Nobêlê ya Aşîtiyê di 1997 de stendi bû, rapporek li ser pelixandina mafên mirov li Kurdistana Tirkiyê weşand.

Rappor dibêje ku di dirêjayiya 11 mehên qedexekirina hatûçûnê de, hêzên ewlehiyê yên tirkî *"bi zanebûn û bi awakî ne yasayî ne hişt ku maddeyên tendurustiyê (saxî) bigihêjin Başûrê-Rojhilata Kurdî li welat"*. Wê ev yek *"cezakirina girseyî (kitleyî), ku bi awayekî gelek hişk ji aliyê yasaya mirovî ya navneteweyî hatiye qedexe kirin"* bi nav kir. Rappor PKK û mîlîsên cuhan ku girêdayî wê ne jî tawanbar kir ku ew jî, bi êrîşên xwe û bi danîna rêbendan beşdarî vê rewşê dibin.

Di Nîsan û Gulan 2016 de, PHR çû seredana Kurdistana Tirkiyê, ji bo ku tê de lêkolîneke bike. Li gora wê, mêdyayên fermî (resmî) daxuyand ku di navbera 24 Tîrmeh 2015 û 23 Gulan 2016 de 7.561 hatin kuştin, lê di nav wan de sîvîl nîn in. Rêxistina Mafên Mirov li Tirkiyê jî got ku di navbera 16 Tebax 2015 û 20 Nîsan 2016 de, ji kêmasî ve 338 sîvîl mirin. Rêxistina International Crisis Group daxuyand ku ji 20 Tîrmeh 2015 de, 1.856 kes, ku ji wan 319 sîvîl, mirin.

PHR daxuyand ku ewê qedexekirina hatûçûnê bandora wê ya demdirêj li ser tendurustiyê li Kurdistanê hebe û ku *"ji bo Kurdan, nema tu ciyek ji bo rojnamevan û çalakvanên mafên mirov heye ku karibin pelixandina gelheya kurdî şirove bikin û wekhevî û dadiyê bixwazin"*.
*(rudaw.net, 13.08.2016)*

**ALMANYA : ERDOĞAN PIŞTGIRIYA ISLAMIYAN DIKE**
Di daxuyaniyeke girtî de, wezîrê almanî yê hundir bersîvên pirsên parlementerên koma partiya çep "Die Linke" dan û got ku ew bawer dike ku serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan û partiya wî AKP piştgirî û hevkariya komên islamî li Rojhilata Navîn, weka Birayên Misilman, Hamas û komên islamî yên çekdar li Sûriyê, dikin. Wî ev yek got : *"Weka encama islamîkirina pileyî* (hêdî hêdî) *ya siyaseta hundir û derve ya Ankara ji 2011 de, Tirkiye bûye platformeke navendî ya tevgerê ji bo komên islamî li Rojhilata Navîn"*.

Helwesta wezîr li ser bingeha agahdariyên servîsên dizzî yên almanî ye. Daxuyaniya wî pirs (problêm) bi wezîrê almanî yê karên derve re derxistin. Wezîr îtîraf kir ku ew diviya bû ku berê dîtina wêzîr bistîne.
*(rudaw.net, 18.08.2016)*

# KURDISTANA IRAQÊ

## 2mîn BÎRANÎNA NIJADKUJIYA ŞINGALÊ

***Di 03 Tebax 2016 de***, bi hinceta (munasebet) 2mîn sersaliya nijadkujiya Kurdên Yezîdî, ku li navçeya Şingalê ji aliyê Dewleta Islamî hat kirin, merasîmeke mezzin li goristana Şerfeddînê bû. Nimînendeyên (temsîlcî) 60 welatan hatin vexwendin (dawet kirin).

Fermandarê pêşermgeyên yezîdî, Qasim Şeşo, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku ev goristan bûye sembola têkoşîna wan. Û wî got jî ku dema ku Şingal ji aliyê DAIŞê di 2014 de hat vegirtin (işgal kirin), şervanên vê rêxistinê 13 caran êrîşî Şerfeddînê kir, lê ku ew bi ser ne ketin, ji bo ku her car ew dihatin paş de xistin.

Serokwezîrê kurd Nêçîrvan Berzanî peyamek şand û tê de got ku ewê hukûmeta wî hertiştî bike ji bo azadkirina girtiyan û ku encumeneke taybetî hatiye pêk anîn, ji bo ku qirkirina Yezîdiyan ji aliyê sazendeyên navneteweyî weka Nijadkujî bê nas kirin.

Berpirsiyarê Buroya Azadkirina Kurdên Yezîdî, Huseyn Kuro, daxuyand ku heta nuha 2.640 Kurdên yezîdî ji DAIŞê hatine rizgar kirin, lê ku 3.764 hîn jî di nav destên wê de ne. 1.400 zarok hatine birin bingehên DAIŞê li Reqqa, Telefer û Mûsilê, ji bo ku rahênanên (tedrîb) leşkerî bistînin û bibin serbazên (esker) islamî.

Kuro got jî ku ji 30 gorên hevrayî bêtir hatin dîtin û ku 20% ji navçeya Şingalê hîn ne hatiye rizgar kirin.

Gelek merasîmên bîranînê li navçeyên cihê yên Kurdistanê û li derve bûn. ***Di 04 Tebax de***, li Washingtonê, Kurdên ku li Amerîka dijîn li ber Saraya Sipî xwe pêşan da (meşiyan). Nimînendeyên hukûmeta Kurdistana Iraqê û Amerîkî jî beşdar bûn. Ji wan, nimînendeyê Muzeya Holocaustê (nijadkujiya cihuyan ji aliyê Hitler û naziyan) hebû û wî got ku civaka navneteweyî têr alîkariya Şingal û Kurdên Yezîdî ne kir û ku wê ji bo azadkirina yên ku hîn jî di nav destên Dewleta Islamî de ne jî zêde ne kir.
*(rudaw.net, 03, 05.08.2016)*

## ÊRÎŞEKE NUH LI SER ŞINGALÊ TÊ DÛR XISTIN

***Di 16 Tebax 2016 de***, di demjimêr 4.30 a serê sibê de, nêzîkî 120 şervanên Dewleta Islamî cardin ji 4 aliyan êrîşî Şingalê kir. Bi alîkariya firokeyên hevalbendiya navneteweyî, pêşmerge ew dehf dan û 60 ji wan kuştin. 5 pêşmerge birîndar bûn.
*(rudaw.net, 16.08.2016)*

## DI 2 SALAN DE, 15.000 ZAROKÊN YEZÎDÎ LI KAMPAN BÛN

Li gora birêvebiriya tendurustiyê ya parêzgeha Duhokê, di her du salên dawîn de, 21.423 zarok li kampên penaberên en Duhokê bûn. Ji wan, 15.000 zarokên yezîdî, ku dê û bavên wan piştî êrîşa Şingalê ya jorîn tê de bi cî bûn, in.
*(rudaw.net,* ***16.08.2016)***

## PKK LI ŞINGALÊ

Fermandarê hêzên PKKê li Şingalê, Egîd Civiyan, daxuyand ku partiya wî beşdar bû azadkirina vê navçeyê û ku 220 şervan hunda kirin. Lê PDKê (Partî Dêmokratî Kurdistana Iraqê) got ku wê 500 pêşmerge hunda kirin.

Egîd Civiyan got ku beşa pêşîn a erkê (wezîfe) PKKê li Şingalê kutah bû (qediya) û ku ewê tê de bimîne, ji bo amadekirina beşa 2mîn, a azadkirina girtiyên ku di nav destên Dewleta Islamî de ne. Û wî got jî ku partiya wî amade ye ku bi PDKê re, û bi hemî partiyên ramyariyî yên kurdî, yên her 4 perçeyên Kurdistanê, re dyalogê bike.

Elî Ewnî, yek ji fermandarên PDKê jî daxuyand ku ciyê çalakiyên PKKê ne li Kurdistana Iraqê, lê li Kurdistana Tirkiyê, ye. Ew beşdar bû bernameyeke têlêvîzyonî ya Rûdawê û tê tê de ji PKKê xwest ku biçe gundê serokê xwe yê li zîndanê, Abdullah Öcalan, rizgar bike.
*(rudaw.net, 04.05.2016)*

## HIN PENABERÊN YEZÎDÎ VEDIGERIN ŞINGALÊ

Nêzîkî 25 malbatên Kurd ên yezîdî, ku li kampa Newrozê, li Kurdistana Sûriyê, bi cî bû bûn, vegeriyan Şingalê. Ew venegeriyan gundên xwe, ji bo ku ew hîn di destên Dewleta Islamî de ne, lê li Şerfedînê bi cî bûn. Rêxistina Xêrxwaziyê ya Berzanî alîkariya wan kir.

Li gora penaberên ku li navçeya Cezîrê, li Kurdistana Sûriyê, dijîn, ji 100 malbatên din bêtir xwe amade dikin ku vegerin Kurdistana Iraqê.
*(rudaw.net, 28.08.2016)*

## 83mîn BÎRANÎNA NIJADKUJIYA FILLEYAN

83mîn bîranîna nijadkujiya Filleyan li ber dêra Mar Yûsif, li Hewlêrê, bû. Ew ji aliyê Yekîtiya Nivîskar û Çalakvanên Fille hat pêk anîn.

Çend caran Asûrî, Suryanî û Kildanî hatin qir û sirgûn kirin : Di 1901 de li Sîfo, 1933 li Sêmêlê, 1969 li Siriyê û di 2010 de li Seyidet El-Nejat. Di Tebax 1933 de, leşkerê iraqî ket nav Sêmêlê, girêdayî Duhokê. Wî tê de

rûniştevanên 11 ji gundên wê civandin û ew qir kirin. Fille ji 11 Tebaxê re dibêjin *"Roja Şehîdan"*.
*(rudaw.net, 07.08.2016)*

## DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ

***Ji 10.000 mîn bêtir hatin pûç kirin***
Fermandarekî pêşmerge, Zîwer Muhammed, got ku ji destpêka şerrê li dijî Dewleta Islamî di 2014 de, ji 10.000 bombe bêtir, ên vê Dewletê, hatin pûç kirin.
*(rudaw.net, 31.08.2016)*

***Rizgarkirina bîrên pêtrolê***
Di navbera 2014 û 2015 de, Dewleta Islamî 30% ji bîrên pêtrolê li Iraqê stendi bûn. Nuha, pêşmerge û leşkerê iraqî, bi piştgiriya hêzên ezmanî yên navneteweyî, piraniya wan rizgar kir. Bitenê parzûnên Geyare, ya girêdayî Mûsilê, di destên DAIŞê de mane.
*(Rudaw.net, 04.08.2016)*

***Pevçûn li nêzîkî Suleymaniyê***
***Di 04 Tebax de***, pevçûn li Sengawê, girêdayî Suleymaniyê, di navbera hêzên ewlehiyê yên kurdî û 2 çekdarên nenas de bû. Her du hatin kuştin.

***Di 17 Tebax de***, cardin pevçûn di navbera hêzên ewlehiyê yên kurdî û komeke çekdar a nenas de bû. 3 endamên wê hatin kuştin û 3 polîsên kurd birîndar bûn.
*(rudaw.net, 17.08.2016)*

***2 komên têrrorîst li Suleymaniyê tên ragirtin***
Hêzên ewlehiyê yên Kurdistanê, bi piştgiriya yaneyên (êkîp) antî-têrrorîst ên Kurdistanê, endamên 2 komên têrrorîst, ku xwe amade dikir ku teqînan li Suleymaniye, Halabca, Germiyan û Raperînê bikin, ragirtin. Ev hêzên ewlehiyê yên kurdî hergav di amadebaşiyê de ne, ji bo ku planên têrrorîstan pûç bikin û ewlehiya xelk dabîn (t'emîn) bikin.
*(rudaw.net, 22.08.2016)*

***Neştergeriyeke 14 demjimêran!***
Pêşmergeyek, Keyfî, ku di şerrê li dijî Dewleta Islamî de ji sermilê xwe birîndar bû, neştergeriyeke (ameliyat) serketî, ku li nexweşxaneya Rizgarî li Hewlêrê 14 demjimêr ajot, kir. _Bijîjkan (doktor) got ku ev cara yekemîn e ku neştergeriyeke weha li Kurdistanê tê kirin.
*(rudaw.net, 26.08.2016)*

## ENIYA KERKÛKÊ

***2 Bîrên pêtrolê li Kerkûkê tên şewitandin***
Dewleta Islamî êrîşeke xwekuj li ser parzûneke pêtrolê ya gundê Bay Hesen kir. Piştî hefteyekê, du bombe li ser bîreke pêtrolê ya bajarokê Sergeranê, li nêzîkî bingeheke pêşmerge, teqiyan.
*(rudaw.net, 10.08.2016)*

***DAIŞ destgehên pêtrolê bombe dike***
***Ji Çile 2016 de***, Dewleta Islamî 8 caran destgehên pêtrolê yên li Kerkûkê bombe kirin. Piştî her teqînekê, şandina pêtrolê ber bi bendera tirkî ya Ceyhanê rawestiya.

***DAIŞ 3.000 kesan li Hewîcê radigire***
Encumena Penaberan a U.N.ê di rappora xwe de daxuyand ku Dewleta Islamî roejek, ***04 Tebax***, 3.000 kes ji gund û bajarokên Hewîcê, ku girêdayî Kerkûkê ye, ragirtin. Ev yek ji bo ku wan dixwest ku birevin Kerkûkê. Bi ser de jî, wê 12 ji wan kuştin. Hemî ev kes bi *"reva ji axên Xilafetê"* hatine tawanbar kirin.

Di Nîsan 2016 de, bi sedan kes ji Hewîce û Geyare reviya bûn û xwe radestî pêşmerge kiri bû. Piraniya kesên ku direvin jin û zarok in û ew nêzîkî 12 demjimêran di rê de diçin, berê ku bigihêjin navçeyên ewleh (emîn).
*(rudaw.net, 05.08.2016)*

***Oldarên Hewîcê li dijî DAIŞê hişyarî didin***
Bi hezaran kesên din kari bû birevin û li navçeya Kerkûkê xwe radestî pêşmerge kir. Melleyên Hewîcê li mizgeftên Kerkûkê dibêjin ku Dewleta Islamî dîn e û ku ew mizgeftan bi kar tîne ji bo ku xelk bixapîne. Weqfa Sunnî ya Hewîcê dibêje ku DAIŞ ayetên qur'anê li gora berjewendiyên (menfeet) xwe diguherîne.
*(rudaw.net, 13.08.2016)*

***Şerr li navçeya Xurmatû***
Pevçûn di navbera hêzên pêşmerge û Dewleta Islamî de, li nêzîkî gundên Zerge û Pîr Ehmed, ên navçeya Xurmatû, li parêzgeha Kerkûkê, bûn.

***Di 11 Tebax de***, bi şev, şerr li Xurmatû ajot (dewam kir). 1 pêşmerge hat kuştin û 3 birîndar kirin. Fermandarê eniya Xurmatû, Abdullah Bor, got ku gelek şervanên DAIŞê hatin kuştin û ku laşên wan di destên pêşmerge de ne.
*(rudaw.net, 11 û 12.08.2016)*

***Her roj 1000 kes pena dibin Mexmûrê***
***Di Tîrmeh 2016 de***, her roj 1.000 kes ji Dewleta Islamî reviyan. Eva dawîn cezayê 400 € ji yên ku dixwazin birevin destine. Jineke ducanî (hamile) li nexweşxaneyeke Hewlêrê wefat kir.

Ev penaberên hundirî (Internally Deplaced Persones) li kampa Debaga, li Mexmûrê, tên bi cî kirin. 30.000, ango 20 caran ji jimara rûniştevanên vê navçeyê bêtir, tê de dijîn.
*(rudaw.net, 12.08.2016)*

***Dewleta Islamî êrîşî kampên Mexmûrê dike***
***Di 26 Tebax de***, demjimêr 6.30 a serê sibê, Dewleta Islamî êrîşeke xwekuj li kampa jorîn kir. Şervanekî HPG

(Hêzên Parastina Gel, ku girêdayî PKKê ne) û penaberek hatin kuştin.

***Li Wadî El-Neft Pêşmergeyek tê kuştin û yek birîndar kirin***

***Di 20 Tebax de***, dema ku pêşmerge alîkariya sîvîlên ku ji Hewîcê ber bi Wadî El-Neft, li Başûrê Kerkûkê, direviyan dikir û xwarin dida wan, zilamên rûgirtî yên Dewleta Islamî agir berda wan. 1 pêşmerge hatin kuştin û 1 jî birîndar kirin.

***Zarokek tecrube dike ku xwe li mizgefteke şîî biteqîne***

***Di 21 Tebax de***, polîsê Kerkûkê cuhanekî ku pişteke (qayîş) bombekirî li xwe kiri bû û tecrube dikir ku xwe li hundirê mizgefteke şîî biteqîne, ragirt. Wî îtîraf kir ku bavê wî bû ku rahênana (tedrîb) wî û ya birayê wî kir û ew şandin vî ciyî. Û wî got jî ku ew penaberên Mûsilê ne.

Hinek berê ragirtina vî cuhanî, yekî din xwe li Wasitê, li nêzîkî Kerkûkê, xwe teqand.
*(rudaw.net, 22.08.2016)*

***61 têrrorîst 15 sal zîndan distînin***

Birêvebiriya polîsên navçeya Kerkûkê daxuyand ku ji 15 Çile heta 23 Tebax 2016, 61 têrrorîst, ji komên cihê, hatin ragirtin û ku li gora bend 4 a yasaya (qanûn) antî-têrrorîst, her yek ji wan cezayê 15 sal zîndan stend.

Vê birêvebiriyê got jî ku 35 kesên din, ji bo heman sedemê, hatin ragirtin, lê ku ew hîn ne hatine tawanbar (mehkûm) kirin û ku 101 kesên din jî, ji bo têrrorîsmê, hatine ragirtin û ku wan îtîraf kir ku êrîşên têrrorist kirine, radestî hêzên iraqî hatin kirin.
*(rudaw.net, 23.08.2016)*

***Li Daqûqê 1 Pêşmerge tê kuştin û 2 birîndar kirin***

***Di 27 Tebax de***, di demjimêr 5.30 a serê sibê de, mîneke ku ji aliyê Dewleta islamî hati bû danîn li ser karwaneke pêşmerge, li Qaqûqê, li Başûrê Kerkûkê, teqiya. 1 pêşmerge hat kuştin û 2 birîndar kirin.

Di vî şerrî de, ev mînên DAIŞê sedema piraniya kuştin û birîndarkirina pêşmerge ne.
*(rudaw.net, 27.08.2016)*

***Banga Erebên Kerkûkê***

Serokên êl (eşîr) û partiyên kurdî yên Kerkûkê bangî pêşmerge kir ku navçeyên wan rizgar bikin, ji bo ku ew bawer in ku hukûmeta iraqî şerrekî taifî (olî : şîî-sunnî) dike û ku hêviya wan ji Bexdadê ne maye. Serokê encumena ramyariyî (siyasî) ya Ereban, Hesen Jubûrî, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku wezareta koçberiyê bi penaberên Hewîcê xerîk (mijûl) nabe.

Nêzîkî 350 kes rojane ji Dewleta Islamî direvin û xwe radestî ewlehiya Kerkûkê dikin. Lê hukûmeta iraqî alîkariya van penaberan nake.
*(rudaw.net, 28.08.2016)*

**ENIYA MÛSILÊ**

***Berpirsiyarê DAIŞê li Mûsilê hat kuştin***

Berpirsiyarê ragihandinê yê Partî Dêmokratî Kurdistan li Mûsilê, Seîd Memûzînî, ji Rûdawê re daxuyand ku hêzên ezmanî yên hevalbend berpirsiyarê Dewleta Islamî li deşta Mûsilê, Abdullah Eskerî, û çendên din kuştin. Eskerî sîvîlên ku direviyan dikuştin.
*(rudaw.net, 01.08.2016)*

***Dewleta Islamî 62 şervanên xwe dikuje***

Berpirsiyarê beşa Mûsilê ya Partî Dêmokratî Kurdistan (PDK), Ismet Receb, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku berpirsiyarê malî yê Dewleta Islamî û 3 şervanên wê yên din pere ji sendûqê dizzî û reviyan. Piştî vê yekê, DAIŞê 6 şervanên xwe, bi tawana ku alîkariya wan kir, kuştin. Ji berê, şervanên vê rêxistinê pere li Iraq û Sûriyê dizzî bû.

Berpirsiyarê ragihandinê yê PDKê, Seîd Memûzînî, ji Rûdawê re daxuyand ku di ***02 Tebax 2016*** de, Dewleta Islamî 62 ji şervanên xwe kuşti bûn. Û wî got jî ku nuha ev rêxistin di 3 beşan de perçe bûye.

Sîvîlên yek ji taxên Mûsilê êrîşî bingeheke Dewleta Islamî kir û ala wê daxist.

Mûsil, 2mîn bajarên Iraqê ye ku di destpêka Hezîran 2016 de ji aliyê Dewleta Islamî hati bû vegirtin.
*(rudaw.net, 02,03.08.2016)*

***Navçeyên Enbar û Mûsilê tên rizgar kirin***

***Di 01 Tebax 2016 de***, leşkerê iraqî bajarokê stratêjîk ê Girava Xalidiyyê, ku girêdayî Enbarê ye, rizgar kir.

***Di 02 Tebax de***, li navçeya Mûsilê, vî leşkerî çavdêriya (kontrol) riya sereke di navbera bajarokên Hezer û Telûl Bacê de, û xaçeriya (çaryan) Hezer û gundên derdorê, kir.
*(rudaw.net, 02.08.2016)*

***3 girtiyên kurd tên kuştin***

***Di 04 Tebax de***, Dewleta Islamî 3 girtiyên kurd li Mûsilê kuştin. ***Berê rojekê, bi şev,*** duruşmên (slogan) "Mirin ji Daişê re", "Mirin ji Ebû Bekir El-Bexdadî re", "Me ji Destên Daişê rizgar bikin" li ser dîwarên bajar hati bûn nivîsîn.
*(rudaw.net, 04.08.2016)*

***Dewleta Islamî hemî belgeyan dişewitîne***

Berpirsiyarê Partî Dêmokratî Kurdistan (PDK) li Mûsilê, Seîd Memûzînî, ji Rûdawê re daxuyand ku

Dewleta Islamî hemî "tapû" û belgeyên xwedîbûna erd, xanî û hebûnên rûniştevanên Mûsilê şewitandin û dêlva wan belgeyên nuh, ku peyt (isbat) dikin ku ev hebûn ên wê ne, çêkirin. Ev yek ewê pirsên (problêm) mezzin, piştî tevgera nêzîk a rizgarkirina Mûsilê, derxîne, ji bo ku li her derekî ku malbateke kurd tê de ji Dewleta Islamî reviya, malbateke ereb li ciyê wê hat danîn.
*(rudaw.net, 05.08.2016)*

***Gundekî Geyarê tê rizgar kirin***
***Di 12 Tebax de***, bi piştgiriya firokeyên hevalbendiya navneteweyî, leşkerê iraqî gundê Imamê, li Başûrê Geyarê, rizgar kir.

Navçeya Geyarê yek ji mezzintirîn navçeyên Iraqê ye û 60 km li Başûrê bajarê Mûsilê ye.
*(rudaw.net, 12.08.2016)*

***Efserekî pêşmerge li Xazirê tê kuştin***
***Di 10 Tebax de***, efserekî (zabit) pêşmerge li eniya Xazirê, Haşim Zîbarî, di şerrekî li dijî Dewleta Islamî de hat kuştin.
*(rudaw.net, 10.08.2016)*

***12 gund li Xazir û Gwêrê tên rizgar kirin***
***Di 14 û 15 Tebax 2016 de***, 8 pêşmerge li 2 eniyan şerrê Dewleta Islamî kir. 12 gund hatin rizgar kirin û 130 şervanên islamî hatin kuştin.

***Di 20 Tebax de***, di demjimêr 3 ya serê sibê de, li eniya Gwêrê, 45 km li Rojavaya Hewlêrê, Dewleta Islamî êrîşî pêşmerge kir. Piştî şerrekî giran, 20 ji şervanên wê hatin kuştin. Piştre, firokeyên hevalbendiya navneteweyî yekîneyên Dewleta Islamî ji 10 caran bêtir bombe kirin.

***Di 20 Tebax de***, di demjimêr 3 ya serê sibê de, Dewleta Islamî êrîşî eniyên parastinê yên kurdî kir. Piştî bi demjimêran şerr, pêşmergeyan 20 ji şervanên wê, li gundê Şanafî, yê girêdayî Gwêrê, kuştin.
*(rudaw.net, 16,20.08.2016)*

***Amanca tevgera Gwêr-Xazirê***
3 amanca vê tevgerê hene : 1) Rizgarkirina 12 gundên vê navçeyê û girê Kehîşê, yê nêzîkî Bakurê çemmê Zê. 2) Dûrxistina metirsiya (tehlike) Dewleta Islamî, bi taybetî ji firokexaneya navneteweyî ya Hewlêrê. 3) Rizgarkirina parzûna pêtrola Hemam Elî û bîrên pêtrolê ku di destên Dewleta islamî de ne.
*(rudaw.net, 15.08.2016)*

***2 pêşmergeyên Kurdistana Sûriyê li Gwêr-Xazirê tên kuştin***
***Di 14 Tebax de***, di tevgera jorîn de, 2 pêşmergeyên Kurdistana Sûriyê, Ibrahîm Hemze Ferho û Hebîb Qedrî Muhammed, hatin kuştin û 10'ên din jî birîndar bûn. Heta nuha, 38 pêşmergeyên vê beşa Kurdistanê hatine kuştin. Li ser daxwaziya Ferho, ew li Kurdistana Iraqê hat gor kirin. Lê laşê Muhammed hat birin Kurdistana Sûriyê.
*(avestakurd.net, 14.08; rudaw.net, 15.08.2016)*

***Hukûmeta iraqî naxwaze ku pêşmerge bikevin nav Mûsilê***
***Di 16 Tebax 2016 de***, serokwezîrê iraqî Heyder Ebadî daxuyand ku dema ku pêşmerge ciyekî li navçeya Mûsilê rizgar bikin, divê ku ew xwe jê bikişînin. Lê hukûmeta Kurdistanê bersîva wî da û got ku ewê pêşmerge ji navçeyên ku azad dikin xwe nekişînin (Parêzgeha Mûsilê girêdayî hukûmeta Bexdadê, ne ya Kurdistanê, ye).
*(rudaw.net, 17.08.2016)*

***12 gundên Nînewa tên rizgar kirin***
Pêşmerge 12 gundên parêzgeha Nînewa rizgar kirin û Dewleta Islamî ber bi bingeha wê ya Mûsilê vegerand.
*(rudaw.net, 20.08.2016)*

***Dewleta Islamî êrîşî kampên Mexmûrê dike***
***Di 26 Tebax de***, di demjimêr 6.30 a serê sibê de, 2 şervanên Dewleta Islamî xwe li kampa jorîn teqand. Şervanekî Hêzên Parastina Gel (HPG), ku girêdayî PKKê ne, û penaberek hatin kuştin.
*(rudaw.net, 26.08.2016)*

**DAIŞ 6 JI BERPIRSIYARÊN XWE DIKUJE**
Berpirsiyarê Partî Dêmokratî Kurdistan li Mûsilê, Ismet Receb, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku li Tel Eferê Dewleta Islamî 6 ji berpirsiyarên xwe kuştin, ji bo ku wan dixwest ku birevin Sûriyê.
*(rudaw.net, 23.08.2016)*

**XWEPÊŞANDANA KURDÊN ŞÎÎ LI DUHOKÊ**
Kurdên şebek (şîî), ku li deşta Nînewa, li navçeya Mûsilê, dijîn, li Berdereşê, li nêzîkî Duhokê xwe pêşan da. Wan rizgarkirina 50 gundên xwe, ku di nav destên Dewleta Islamî de ne, xwest. Ev Kurd dixwazin jî zanibin gelo, piştî tevgera Mûsilê, ewê navçeya wan (deşta Nînewa) bê girêdan Herêma Kurdistanê yan na.

Nimînendeyê Kurdên şebek li parlementa iraqî li Bexdadê, Salim Şebek, ji ajansa Rûdawê re got ku ev Kurd dixwazin ku pêşmerge di azadkirina navçeya wan de dereng nemînin.
*(rudaw.net, 25.08.2016)*

**ŞERR LI IRAQÊ (li derveyî Kurdistanê)**

***Rizgarkirina Geyare***
***Di 25 Tebax 2016 de***, leşkerê iraqî bajarokê Geyare, ku tê de 65 bîrên pêtrolê hene, rizgar kir. Dewleta Islamî agir berda wan, ji bo ku xwe ji bombeyên firokeyên hevalbendiya navneteweyî biparêze. Rûniştevanên wê newêrin vegerin. *(rudaw.net, 29.08.2016)*

***Teqînek li dawetekê li nêzîkî Kerbela***
***Di 08 Tebax de***, dereng bi şev, 5 êrîşên xwekuj li dawetekê, li Eyn Temr, girêdayî bajarê piroz ê şîî Kerbela, bûn. 18 kes hatin kuştin. Hêzên ewlehiyê gihajtin û 3 têrrorîst kuştin. Dewleta Islamî li ser torên xwe yên civakî xwedî li vê êrîşê derket.
*(rudaw.net, 29.08.2016)*

***Teqîn li Bexdadê***
***Di 31 Tebax de***, serê sibê, 2 teqînên cihê bûn. 2 kes hatin kuştin û 7 birîndar bûn.
*(rudaw.net, 31.08.2016)*

**AMADEKIRINA ŞERRÊ MÛSILÊ**

***Hişyardayîna xelk***
Firokeyên leşkerî yên iraqî belavok avêtin ser Mûsil û derdorên wê, Te Afer û Beac. Tê de tê gotin ku êrîşa Mûsilê nêzîk dibe û ji rûniştevanan tê xwestin ku xwe ji bingehên Dewleta Islamî dûr bixin (Mûsil paytexta Dewleta Islamî li Iraqê ye).
*(rudaw.net, 23.08.2016)*

***Rizgarkirina Geyare***
***Di 23 Tebax de***, di dimjimêr 6 a serê sibê de, leşkerê iraqî dest bi tevgera çavdêrîkirina navçeya Geyare kir. Fermandarên vî leşkerî dibêjin ku Dewleta Islamî tê de hatiye dorpêç kirin. Fermandar Tehsîn Seîd got ku berê rojekê, bi şev, nêzîkî 100 rûniştevan xwe radestî vî leşkerî kir û wî ew şandin Mexmûrê.

***Di 25 Tebax de***, leşkerê iraqî Geyare rizgar kir. Rûniştevan şahbûna xwe li kuçan nîşan da.

Geyare yek ji mezzintirîn navçeyên Iraqê ye û 60 km li Başûrê Mûsilê ye û weka deriyê ku digihîne Mûsilê tê dîtin. Berê vegirtina wê ji aliyê Dewleta Islamî di 2014 de, jimara rûniştevanên wê digihajt 250.000.
*(rudaw.net, 23.08.2016)*

***Lihevkirin li ser rizgarkirina Mûsilê***
Serokê mîlîsa iraqî ya şîî, Heşdî Şe'bî, û rawêjkarê (muşawir) Ewlehiya Neteweyî ya Iraqî, Falih Feyyaz, ji rojnamevanan re daxuyand ku bi serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, re lihevkirinek li ser tevgera rizgarkirina Mûsilê ji Dewleta islamî bû.

Li gora vê lihevkirinê, ewê leşkerê iraqî û polîsê cihî (mehellî) bikevin nav Mûsilê, lê ku ewê Pêşmergeyên kurd li derveyî bajar bimînin. Feyyaz got jî ku ewê 15.000 şervanên mîsîla şîî, Heşî Şe'bî, beşdarî vê tevgerê bibin.
*(rudaw.net, 28.08.2016)*

**JINEKE KURD FABRÎKA WÊ YA CILLÊN LEŞKERÎ HEYE**
Zrêbar Hewramî, 23 salî, jineke cuhan ji Kurdistana Îranê ye, lê li Kurdistana Iraqê dijî. Wê karê xwe yê li TV berda, ji bo ku bibe karsaz (businesswoman). Wê dest bi kargeheke çêkirina cillên leşkerî kir.
*(rudaw.net, 08.08.2016)*

**DIVÊ KU BIJÎJKÊN BIYANÎ KURDÎ HÎN BIBIN**
Serokê Yekîtiya Bijîjkî ya Kurdistanê, Dr. Şwan Qadir, ji ajansa kurdî Rûdawê re daxuyand ku rêxistina wî dest bi dayîna fêrên zimanê kurdî ji bijîjkên (doktor) biyanî re kir, ji bo ku ew bi giştî bitenê bi erebî dipeyivin. Ev yek, ji sedema gelek gazinên nexweşan, ku nikarin bi awakî baş bi nêzîkî 700 bijîjkên penaber re, ku li Hewlêrê kar dikin, bipeyivin.
*(rudaw.net, 20.08.2016)*

**HÊZA KIRRÎNÊ 50% KÊM BÛYE**
Serokê encumena serjimêriyên (statistiques) Herêma Kurdistanê, Sîrwan Muhammed, daxuyand ku piştî borana (krîz) aborî û şerrê li dijî Dewleta Islamî, hêza kirrînê ya xelk 50% kêm bû. Û wî got jî ku li gora raporan, rewşa aborî ya Kurdistana Iraqê ji ya bajarên iraqî xerabtir e.
*(rudaw.net, 23.08.2016)*

**ŞEWATEKE MEZZIN LI SULEYMANIYÊ**
***Ji 22 Tebax de*** (ji 3 rojan de), ji sedema germa mezzin û zuhabûna heşînayiyê, şewateke mezzin li daristanên navçeya Suleymaniyê, li nêzîkî çiyayê Seffînê, bû. Di 3 rojan de, 2.040 donim şewitîn.

Birêvebiriya Polê Daristan û Jîngehê got ku ev şewat ji sedema gulleyên tifingên nêçîrvanan û neguhdana welatvanan dibin.
*(rudaw.net, 23.08.2016)*

**LIHEVKIRIN BI BEXDADÊ RE LI SER PÊTROLÊ**
***Di 29 Tebax 2016 de***, serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî, û serokwezîrê iraqî, Heyder Ebadî, lihevkirinek li ser firotina (exportation) pêtrola Kurdistanê wajo (imza) kir : Ewê Kurdistan rojane 150.000 bermîl ji bîrên Bawegurgur û Xebaze, bi boriyên xwe, ji bendava tirkî ya Ceyhanê re bişîne. Li wê derê, ewê 75.000 bermîlên Iraqê û 75.000 ên Kurdistanê ji aliyê wezareta kaniyên sirûştî yên Kurdistanê bên firotin.

Bi ser de jî, ewê Bexdad mûçeyên (meaş) karmendên pêtrolê li Kerkûkê bide. Ewê hukûmeta kurdî mûçeyên 7.606 karmendan bide. Ji 5 mehan de, ji sedema nelihevkirinên di navbera her du aliyan de, ev tevger hati bûn rawestandin.
*(rudaw.net, 30.08.2016)*

## SEREDANÊN KURDISTANÊ

### HOLLANDA

***Serokwezîrê hollandî***



***Di 09 Tebax 2016 de***, serokwezîrê hollandî, **Mark Rutte**, rastî serokwezîrê kurd, Nêçîrvan Berzanî, hat. Wan pêwendiyên xwe bi Bexdadê re, şerrê li dijî Dewleta Islamî, rewşa Mûsilê û alîkariya Hollanda ji Kurdistanê re goftûgo kirin. Berzanî bêtir alîkarî ji bo hêzên pêşmerge xwest, ji bo ku ev şerr ne bitenê yê Kurdistanê, lê yê hemî cihanê, ye. Serokwezîrê hollandî dilniya (te'kîd) kir ku ewê welatê wî vê yekê bike, ji bo ku rûmeta (hurmet) wî ya mezzin ji Herêma Kurdistanê re heye.
*(avestakurd.net, 09.08; rudaw.net, 10.08.2016)*

### AMERÎKA

***Sênatorekî Têksasê***
***Di 26 Tebax de***, serokwezîrê kurd Nêçîrvan Berzanî pêşwaziya John Corniyn, sênatorê partiya komarî li Têksasê, kir. Evê dawîn pesan pêşmerge, ji bo biserketinên wan li dijî Dewleta Islamî, da û spasî hukûmeta Kurdistanê kir ku pêşwaziya ewqas penaberan kir. Û li ser vê babetê (mewzû), wî got ku divê ku civata navneteweyî bêtir alîkariya Kurdistanê bike. Û wî got jî ku tevgera nêzîk a Mûsilê pêwîst e û ku, ji bo vê yekê, dive ku hemahengiyeke (coordination) baş di navbera Hewlêr, Bexdad û hêzên hevalbend de hebe û ku xelkê Mûsilê bê parastin.

Berzanî hemî ev daxuyanî pejirandin (qebûl kirin) û got ku pêşmerge gelek cî li dora Mûsilê rizgar kirin û gelek eniyên nuh ji bo stendina vî bajarî vekirin.
*(rudaw.net, 27.08.2016)*

## SEREDANÊN DERVE

### TIRKIYE

***Serok Berzanî li Ankara***



***Di 23 Tebax 2016 de***, bi vexwendina (dawet) fermî ya serokê tirk **Recep Tayyıp Erdoğan**, serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, tevî şandekê çû Ankara. Ew li firokexaneya vî bajarî ji aliyê wezîrê karên derve, Feridun Sinirlioğlu, hat pêşwazî kirin.

Di êvara heman rojê de, ew ji aliyê serok Erdoğan hat pêşwazî kirin. Evê dawîn spasiya Berzanî, ji bo piştgiriya wî di dema tecrubeya darbeyeke leşkerî li Istanbulê (li jor û li bultena me ya berê binêre) de, kir. Wan firehkirina pêwendiyên xwe yên dualiyî, bi taybetî di warê aborî de, giftûgo kir. Û ew li ser şerrê li dijî Dewleta Islamî li Iraq û Sûriyê û amadekirina şerrê Mûsilê jî peyivîn.

Piştre, Berzanî rastî serokwezîrê tirk Binali Yıldırım, li saraya Çankaya, hat. Ji derveyî babetên jorîn, wan pêvajoya aşitiyê li Tirkiyê (şerrê li dijî PKKê) û dibistanên Fethullah Gülen (li jor binêre) giftogo kirin. Di dema giftûgoyan de, alên tirkî û kurdî li paş wan bûn.

***Di 24 Tebax de***, Berzanî çû seredana parlementa Tirkiyê û ji aliyê serokê wê hat pêşwazî kirin. Piştre, ew bi cîgirê serokê vê parlementê û nimînendeyên komên parlementerî yên partiyên AKP (a hukûmetê), CHP (sosyal-dêmokrat) û HDPê (kurdî) re civiyan.

Li dawiyê, Berzanî konfêranseke çapemeniyê kir. Wî ji rojnamevanan re got ku şerrê li dijî Dewleta Islamî babeta sereke ya giftûgoyan bû, ku her du alî li ser awayê têkoşîna li dijî vê rêxistinê li hev kir û ku ji sedema guhertinên mezzin ku di vê navçeyê de di rê de ne, pêwîstiya nêzîkbûn û hemahengiyê (coordination) mezzintir bûye.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 24.08.2016)*

**BELJÎKA**

***<u>Serokê hukûmeta flamanî</u>***
Şandek bi serokatiya wezîrê planê yê Kurdistanê, Elî Sindî, rastî Geert Bourgeois, serokwezîrê Navçeya Flandr, hat. Evê dawîn soz da ku bêtir alîkariya mirovî û bijîjkî ji Kurdistanê re bê kirin û ku pêwendiyên wan ên aborî xurttir bibin (berê çend mehan, Bourgeois çû bû Kurdistanê û seredana kampa penaberan kiri bû).
*<u>(rudaw.net, 31.08.2016)</u>*

**POLÎSÊ ÎRANÎ KURDEKÎ IRAQÊ DIKUJE**
***Di 10 Tebax 2016 de***, polîsê îranî (pasdar) kolberek ji Kurdistana Iraqê, li nêzîkî çemmê Şabedînê, di navbera Kurdistana Iraq û Îranê de, kuşt. Apê wî got ku her du vî karî bi awakî destûrî dikir û ku ew ne qaçaxçî bûn.
*<u>(rudaw.net, 11.08.2016)</u>*

**ÎRAN KURDISTANA IRAQÊ BOMBE DIKE**
Tankên îranî navçeya Sîdekanê, li Kurdistana Iraqê, li nêzîkî sînorê Kurdistana Îranê, bombe kir. Îranê got ku sedema vê yekê ew bû ku Partî Dêmokratî Kurdistana Îranê (PDKÎ) li wê navçeyê ye. Gundî ber bi bajarê Sîdekanê reviyan. Rez û bexçeyên wan hatin şewitandin. Nûçegihanê ajansa kurdî Rûdawê, Bextiyar Qadir, birîndar bû û hat birin nexweşxanê. Bombekirinên gundên Bêrkme, Berbizîn û Berawê dajon (dewam dikin).
*<u>(rudaw.net, 11.08.2016)</u>*

**BELJÎKA 13.5 MILYON € DIDE PENABERAN**
***Di 12 Tebax 2016 de***, hukûmeta beljîkî daxuyand ku wê 13.5 milyon € dane Kurdistana Iraqê, ji bo penaberên hundirî (IDP), ku di nav wan de Sûrî jî hene.

Ji bo alîkarîkirina qurbanên şerr ku beşdar bibin ji nuh de avakirina navçeyên ku di şerrê li dijî Dewleta Islamî de têk çûne (xerab bûne), ewê Beljîka beşek ji vî pereyî bide rêxistinên mirovî yên navneteweyî yên cihê :

- 2 milyon € ji rêxistina penaberan a U.N.ê (UNHCR) re, ji bo kampên cihê yên li Kurdistanê, ji bo dabînkirina (te'mînkirin) servîsên bicîbûn, perwerde, tendurustî, av û destavan (toilettes).

- 2 milyon €, ji bo 2 salan, ji Rêxistina Xwarin û Çandinê ya UNê (United Nations Food and Agriculture Organization).

- 6 milyon €, ji bo 2 salan, ji Hemahenga (coordinatrice) Mirovî ya UNê, Lise Grande, re, ji bo ku ew karibe tavil (pirr zû) lezgîntirîn masrafan bide.

- 1 milyon € ji OCHA re, ji bo hemahengîkirina hemî alîkariyên mirovî li Iraqê.

Kurdistana Iraqê pêşwaziya nêzîkî 2.250.000 penaberan, ku ji wan 250.000 Sûrî û 2 milyon Iraqiyên ku piraniya wan ji parêzgehên Enbar û Mûsilê hatine, dike. Li gora rapporeke UNê, 25% ji rûniştevanên Hewlêrê penaber in û nêzîkî 95% ji malbatên cîhil li vê navçeyê, li derveyî kampan, dijîn.
*<u>(rudaw.net, 13.08.2016)</u>*

**ALMANYA 70 TON ÇEK DIDE**
Wezareta almanî ya parastinê daxuyand ku wê 70 ton çek û alavên leşkerî ji firokexaneya Hewlêrê re şandin. Ji 2014 de, vî welatî 2.000 ton çek dane Kurdistanê.

Almanya endama hevalbendiya navneteweyî li dijî Dewleta Islamî ye û 150 ji rawêjkarên wê yên leşkerî rahênana pêşmerge dikin.
*<u>(rudaw.net, 18.08.2016)</u>*

**RAPIRSÎN : 82.3% SERXWEBÛNÊ DIXWAZIN**
Navenda Aşîtî û Ewlehiya Mirovahiyê, ya Zanîngeha Amerîkî li Kurdistanê, rapirsînek (sondage) li bal 4.200 kesan li Hewlêr, Suleymaniye û Duhokê, kir û ji wan pirsî ku gelo ew dixwazin ku Kurdistan bibe dewleteke serbixwe. 86.3% bersîveke erênî da.
*<u>(rudaw.net, 20.08.2016)</u>*

**PARLEMENTA EWROPÎ : MAFÊ GELÊ KURD Ê SERXWEBÛNÊ HEYE**
Serokê encumena pêwendiyên derve ya koma muhafezekaran (conservateurs) li Parlementa Ewropî, Charles Tannock, got ku mafê gelê kurd ê çarenivîsî (autodétermination) heye û ku piştî rêfêrandumê divê ku civata navneteweyî serxwebûna wî bipejirîne (qebûl bike). Wî ji ajansa kurdî Rûdawê re got ku li nav Yekîtiya Ewropî hevalên bihêz ên Kurdan hene û ku ew bixwe hevalê wan e.

Tannock brîtanî ye. Ji 2004 heta 2007, ew serokê encumena mafên mirov li Parlementa Ewropî bû.
*<u>(rudaw.net, 21.08.2016)</u>*

**"DAILY TELEGRAPH" ALÎGIRA SERXWEBÛNA KURDISTANÊ YE**
Rojnamevanekî rojnameya ingilîzî Daily Telegraph, Con Coughlin, got ku bingeha deweleteke kurdî li Iraq û Sûriyê bi bêdengî tê ava kirin. Ev yek, li gel dijberiya Tirkiye û Sûriyê.

Coughlin got ku li Iraqê, par, pêşmerge Şingal ji Dewleta Islamî rizgar kir û ku nuha ew xwe amade dikin ku Mûsilê rizgar bikin. Li Sûriyê, YPG û hevalbendên wan Kobanî jê rizgar kir. Û wî got jî ku hêzên pêşmerge dûrdîtî ne û moralê wan bilind e.
*<u>(rudaw.net, 31.08.2016)</u>*

**HUKÛMETA IRAQÊ 36 DAIŞÎ SÎDAR DIKE**
***Di 21 Tebax 2016 de***, bi fermana wezareta iraqî ya dadmendiyê, 36 endamên Dewleta islamî hatin sîdar kirin (bi dar ve kirin, daleqandin). Di 12 Hezîran 2014 de, wan Akadêmiya Leşkerî ya Spykerê, li bajarê erebî yê Tikrîtê, dorpêç kiri bû û tê de 700 serbaz (esker) girti bûn.

Li gora serjimêriyên (statistiques) wezareta iraqî ya mafên mirov, heta nuha 1.566 serbaz ji aliyê Dewleta Islamî hatine gulle kirin û ku laşên piraniya wan hatine avêtin çemmê Diclê.
*(rudaw.net, 21.08.2016)*

# KURDISTANA ÎRANÊ

**20 KURD DI ROJEKÊ DE TÊN ÎDAM KIRIN**

Di daxuyaniyekê de, Encumena Neteweyî ya Kurdî li



Sûriyê (ENKS) îdamkirina Kurdan ji aliyê hukûmeta îranî tawanbar kir. Wê got ku di ***02 Tebax 2016*** de, 20 çalakvanên kurd hatin îdam kirin û ku bi vî awayî Îranê hemî yasayên navneteweyî pelixandin. Vê Encumenê bangî UN û rêxistinên mafên mirov kir ku li dijî rejîma îranî bilivin. Û wê got jî ku Îranê mîlîsên xwe li Iraq û Sûriyê belav kirine û, bi vî awayî, beşdar bûye borana (krîz) li vê navçeyê.
*(rudaw.net, 07.08.2016)*

**6 KURD DI ROJEKÊ DE TÊN ÎDAM KIRIN**
***Di 09 Tebax 2016 de***, hukûmeta îranî 6 Kurd, ku ji wan siyasetvan Muhammed Abdullahî, li zîndana Urmiyê, li Kurdistanê, îdam kirin.

Pêla îdamkirina Kurdan li Îranê pêleke riswakirinên (protêsto) navneteweyî rakir.
*(rudaw.net, 09.08.2016)*

**KOLBEREKÎ KURD TÊ KUŞTIN**
***Di 15 Tebax de***, serbazên îranî li sînorê îranî-iraqî kolberek (kesên ku kelepûran li ser pişta xwe hildigirin û difiroşin), Hadî Mînwî, ji gundê Nêya, yê Merîwanê, kuşt. Ji salan de ev kuştin li vî sînorî dibin.
*(rudaw.net, 16.08.2016)*

**ROJNAMEVANEKÎ KURD TÊ RAGIRTIN**
Yekîtiya Nivîskaran, Pena Kurd, daxuyand ku di ***28 Tebax*** de, rojnamevan û çalakvanê wêjeyî (edebî), Mustafa Xelîl Rad, ji aliyê polîsê dizzî yê îranî, Ittilaat, li bajarê Bincûrdî, hat ragirtin. Û wê got jî ku berê 15 rojan, ew hati bû zîndan kirin û piştre, li hemberî dayîna derhûdekê (xerame, pere), hat berdan.

Dadgehê ev rojnamevan bi 6-8 meh zîndan û 74 şelpe (lêxistina bi dar) tawanwar kir. Tawanên wî ev in : 1) Kirina propaganda û alîkarîkirina PJAKê (Partiya Jiyana Azad a Kurdistanê). 2) Belvakirin û bikaranîna alfabeyeke biyanî (latînî) û nasandina amancên partiyên ramyariyî (PKK-PJAK) û dijberiya îranî. 3) Pêwendî bi kafiran (munafiq) re (Mucahidîn). 4) Pêwendî bi Partî Dêmokratî Kurdistan li Îranê (PDK-Î). 5) Derketina ji Îranê bi riyên ne rewa (illégal).
*(rudaw.net, 31.08.2016)*

**RISWAKIRINA 22 RÊXISTINÊN NAVNETEWEYÎ**
Piştî van îdamkirinên jorîn, 22 rêxistinên navneteweyî yên mafên mirov ji hukûmeta îranî xwest ku cezayê îdamê rake. Di daxuyaniya xwe de, wan got ku nuha 915 kes, ku ji wan 390 Kurd, ji bo sedemên siyasî yan jî ji bo dîtinên xwe yên olî hatine zîndan kirin. Li dawiyê, daxuyanî ji welatên ku endamên encumena mafên mirov a UNê ne dixwaze ku fişaran (tezyîq) lis er rejîma îranî bikin.
*(rudaw.net, 16.08.2016)*

**ÎRAN KURDISTANA IRAQÊ BOMBE DIKE**
***Di 11 Tebax de***, leşkerê îranî ji nuh de dest bi bombekirina gundên Berkma, Barbizn û Barawê, yên navçeyên sînorî yên Bradost û Soranê, li Kurdistana Iraqê, kir û gundî neçar (mecbûr) kirin ku jê birevin. Nûçegihanê ajansa kurdî Rûdawê, Bextiyar Qadir, birîndar bû.

Di mehên dawîn de, topxaneya îranî van bombekirinan pêk tîne ji bo ku Partî Dêmokratî Kurdistana Îranê (PDKÎ) bingehên wê li van navçeyên sînorî yên Kurdistana Iraqê hene.
*(rudaw.net, 11.08.2016)*

**ŞANDEKE MEZZIN JI KURDISTANA IRAQÊ**
***Di 13 Tebax de***, şandeke bilind a ewlehiya Kurdistana Iraqê, bi serokatiya wezîrê hundir û cîgirê wezîrê pêşmerge, Kerîm Şingalî, çû Tehranê û tê de rastî sekreterê Encumena Bilind a Ewlehiya Neteweyî ya Îranî, Alî Şamxanî, hat.

Şandê jê xwest ku nema Kurdistana Iraqê bê bombe kirin. Şaxmanî bersîva wê da û got ku divê ku ew bi hev re sînorê xwe yê hevbeş (muşterek) biparêzin. Wezîrê kurd Kerîm Şingalî jê re got ku Kurdistana Iraqê girîngî dide ewlehiya navçeyê û sînorên bi hevsiyên (cîran) xwe re û ku ji bo vê sedemê ye ku ew dixwazin ku her tevgereke ne rewa (illégal) li van navçeyan nehêlin.
*(rudaw.net, 14.08.2016)*

**PARTIYÊN KURDÎ : EM TEVGERÊN XWE RANAWESTÎNIN**
Piştî rasthatina jorîn, a di navbera şanda Kurdistana Iraqê û berpirsiyarên îranî de, partiyên ramyariyî (siyasî) yên Kurdên Îranê daxuyand ku ewê tevgerên xwe li dijî siyaseta hukûmeta îranî ranewestînin.
*(rudaw.net, 17.08.2016)*

**"NGO"YEKE KURDÎ ALÎKARIYA ZAROKAN DIKE**
Rêxistina Jîngehî ya Çiyayê Kesk dest bi kampanya bi navê "Lîztin mafê herkesî ye", li bajarê Merîwanê, kir. Ew her hefte pirtûk û tiştên din berhev dike û li zarokan belav dike. Ew dibêje ku bi kampanyên weha, zarok hestekî (hiss) mirovî yê mezzintir distînin.
*(rudaw.net, 13.08.2016)*

# KURDISTANA SÛRIYÊ

## DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ Û REJÎMA SÛRIYÊ

### ŞERR LI HESÎÇÊ

***Leşkerê sûrî li dijî YPG***
***Di 16 Tebax 2016 de***, leşker û firokeyên sûrî dest bi şerrekî mezzin li dijî YPGên kurdî, li hundirê bajarê Hesîçê, kir. Heta nuha, her du alî tê de bi hev re dijîn û taxan di navbera xwe de dabeş dikin, ji bo ku şerrê Dewleta Islamî bikin. 6 kes hatin kuştin û 8 birîndar bûn. Bi ser de jî, gelek ziyanên maddî bûn.

***Di 18 Tebax de***, hêzên YPG ku li navçeyên din ên Kurdistanê ne xwe gihand hevdu û ber bi Hesîçê çûn.

***Di 19 Tebax de***, YPG şerrê leşkerê sûrî kir. 1 YPG û 14 sîvîl hatin kuştin û 2 Asayiş (ewlehiya YPG) û 45 sîvîl birîndar bûn.

Amerîka piştgiriya xwe ji YPG re bi awakî fermî daxuyand û 2 firoke ji Hesîçê re şandin, ji bok u êrîşên ezamanî yên rejîma sûrî nehêlin. Berdevkê wezareta amerîkî ya karên derve got ku ewê welatê wî vê pirsê ciddî bistîne û dest bi vekolîneke bike.

***Di 20 Tebax de***, parêzgarê Hesîçê, Muhammed Ezal Elî, bangî YPG kir ku rastî hevdu werin, ji bo ku van pirsan li dora maseya giftûgoyan çare bikin.

***Di 21 Tebax de***, di pevçûnên ku hemî şev ajot de, ji kêmasî ve 6 serbazên sûrî ji aliyê YPG hatin kuştin. Evên dawîn belavokek belav kir û tê de ji leşkerê sûrî xwest ku çekkên xwe deyne û xwe radestî nêzîktirîn navenda ewlehiyê ya YPG bike, û di heman demê de soz da wan ku ewê baş li wan bê nêrîn.

Çavdêrgeha Sûrî ya Mafên Mirov ji berê daxuyandi bû ku nêzîkî 43 kes di navbera 19 û 21 Tebax de hatine kuştin.

Amerîka YPG weka beşek ji hevalbendiya navneteweyî li dijî Dewleta Islamî dibîne û hişyarî da leşkerê sûrî ku *"xwe nexin nav karê hêzên me yên hevalbend yan şirîkên me"*.
*(rudaw.net, 7,18,19,21,22,23.08.2016; kurdwatch.org, 22.08.2016)*

***Di 23 Tebax de***, di demjimêr 14 de, şerr di navbera Asayiş û leşkerê sûrî de kutah bû. Her du alî lihevkirineke aşîtiyê, li bin serpereştiya Rûsya, wajo (imza) kir. Di vê lihevkirinê de 4 xal hene : 1- Agirbirrîn û derketina leşkerê sûrî û Hêzên Parastina Neteweyî (ku nêzîkî rejîmê ne) ji bajarê Hesîçê. 2- Guherandina girtî û birîndaran. 3- Vekirina riyên girtî. 4- Vegerandina karmendên ku ji kar hati bûn derxistin.

Wajokeran (ên ku imza kir) bangî xelk kir ku vegere mala xwe, bê ku soza qerebûkirinê (tawîz) bide wî. Beşek vegeriya, lê ji sedema têkçûnên mezzin ên avahiyan, piraniya wan venegeriya.

Di vî şerrê Hesîçê de, Asayiş û YPG gelek cî, ku ji wan zîndana navendî ya Hesîçê, ya leşkerê sûrî, rizgar kirin. Endamekî Asayişê got ku gelek kesên bêguneh tê de girtî ne. Ev zîndan di 1993 de şewitî bû û bi dehan cuhanên kurd miri bûn û birîndar bû bûn.
*(Rudaw.net, 24,26.08.2016)*

### MUNBIC RIZGAR BÛ!
***Di 12 Tebax 2016 de***, bajarê Munbicê ji aliyê Hêzên Sûriya Dêmokratîk (HSD), ku serkêşiya wan Yekîneyên Parastina Gel (YPG), yên partiya kurdî PYD, dike, hat

rizgar kirin. Ew ji aliyê Dewleta Islamî di destpêka 2014 de hati bû stendin û şerr tê de di 31 Gulan 2016 de, bi piştgiriya hevalbendiya navneteweyî, dest pê kiri bû.






Di vî şerrê Munbicê de, 4.180 şervanên Dewleta Islamî hatin kuştin û 112 hatin girtin. Ji aliyê din, 264 pêşmerge, ku ji wan 3 Amerîkî, hatin kuştin. Laşên van Amerîkiyan hati birin Kurdistana Iraqê, ji bo ku ji firokexaneya Suleymaniyê bên şandin Amerîka.

Di reva xwe de, şervanên Dewleta Islamî 2.000 sîvîl weka mertalên mirovî bi kar anîn! Û wan mîn jî danîn nav xaniyên têkçûyî. HSD tecrube dikin ku, bi alîkariya pirsporên amerîkî û fransî, wan pûç bikin.

Li gora Ajansa Associated Press, ev 2mîn mezzintirîn darbe, ji dema rizgarkirina Girê Sipî de, ji Dewleta Islamî re ye (li bultenên me yên buhurî binêre).

Munbic 65 km li Başûrê Kobanî ye. Ew ji aliyê stratêjîk gelek girîng e, ji bo ku ew riyên Heleb, Entab (li Kurdistana Tirkiyê), Reqqa (paytexta DAIŞê li Sûriyê) û Mûsilê (paytexta wê li Iraqê) girê dide hevdu. Jimara rûniştevanên we digihêje 70.000.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 06,12,13,30.08; kurdwatch.org, 18.08.2016)*

***Helwesta Tirkiye û Amerîka***
Serokwezîrê tirk, Binali Yıldırım, û cîgirê serokê amerîkî, Joe Byden, ji Hêzên Sûriya Dêmokratîk xwest ku ji Munbicê derkevin û xwe bikişînin Rojhilata çemmê Firatê. Wezîrê amerîkî yê karên derve, John Kerry, jî ev heman tişt xwest.
*(avestakurd.net, 24.08; rudaw.net, 25.08.2016)*

***YPG xwe ji Munbicê kişand***
Piştî xwestina Amerîka, YPG di daxuyaniyekê de xwekişandina xwe ji Munbicê got. Wan tê de got ku bi qewirandina Dewleta Islamî ji vî bajarî, wan (YPG) erkê (wacib) xwe kir, bajar radestî (teslîm) encumena xwe ya leşkerî kir û xwe ji bingehên xwe yên leşkerî kişand.
*(avestakurd.net, 25.08.2016)*

***Helwesta PYD***
Hev-serokê partiya kurdî PYD daxuyand ku Tirkiye, Îran û Sûriye sê dewletên dijmin ên Kurdan in û ku dema ku pirsek li ser evên dawîn hebe, ew nelihevkirinên xwe datînin aliyekî.
*(rudaw.net, 30.08.2016)*

***Munbic ji Birêvebiriya Sîvîl re tê radest kirin***
Birêvebiriya Leşkerî ya Munbicê bajar radestî Birêvebiriya Sîvîl kir û eva dawîn dest bi normalkirina rewşa bajar kir. Piştî 73 rojên şerr li dijî Dewleta Islamî, rûniştevan dest bi vegerê kir. Birêvebiriya Sîvîl encumenên cihî (mehellî) ava kirin, ji bo ku alîkariya rûniştevanên bajar û gundên derdorê bikin ku vegerin jiyana xwe ya normal û navçeya xwe ji nuh de ava bikin.
*(rudaw.net, 30.08.2016)*

**EFRÎN**
***Di 27 Tîrmeh 2016 de***, Ismaîl Ibrahîm Xelîl, endamê Partiya Dêmokratîk a Kurdî li Sûriyê (PDK-S), li zîndanê, li bajarê erebî yê Laziqiyyê, ku li ser Deryayê Sipî ye, wefat kir. Ew di 10 Çirî 2011 de, li Qarmatlaqê, li nêzîkî Efrînê, ji aliyê hêzên ewlehiyê yên sûrî hati bû ragirtin. Ew bi qaçaxçîtiya çekkan hati bû tawanbar kirin, lê tucar ne hat dadgeh kirin.
*(kurdwatch.org, 10.08.2016)*

***Di 14 Tebax de***, du roj piştî rizgarkirina Munbicê û çend demjimêr piştî avakirina Encumena Leşkerî ya El-Babê, hev-serokê kantona Efrînê, Hêvî Mustafa, rewşa awarte li Efrînê daxuyand, ji bo parastina wê ji Dewleta Islamî.
*(rudaw.net, 14.08.2016)*

**BAB, LI BAKURÊ HELEBÊ**
***Di 31 Tebax de***, hevalbendên ereb ên YPG, Ceyş El-Suwwar, û Hêzên Sûriya Dêmokratîk (HSD, ku YPG'yên kurdî tê de hêza sereke ne 3 gundên navçeya Babê, li Bakurê Helebê, rizgar kirin û 34 şervanên Dewleta Islamî kuştin.
*(rudaw.net, 31.08.2016)*

**LEŞKERÊ TIRKÎ AGIR BERDIDE KESÊN KU DIREVIN**

***Di 05 Tebax 2016 de***, parêzerên sînorên tirkî agir berda kesên ku tecrube dikir ku ji Sûriyê ber bi Tirkiyê, li Cindirîsê, 25 km li Başûrê-Rojavaya Efrînê, birevin. 1 kes hatin kuştin.

*(kurdwatch.org, 24.08.2016)*

**LEŞKERÊ TIRKÎ DIKEVE CERABLUSÊ**

***Di 24 Tebax 2016 de***, Leşkerê Azad ê Sûrî ket nav Cerablusê, bajarekî sûrî li Bakurê Helebê, li sînorê sûrî-tirkî, ku ji 2014 de di destên Dewleta Islamî de ye. Ev yek, bi piştgiriya hêzên bejayî (erdî) yên leşkerê tirkî ku ketin nav axa sûrî. Ev tevgera Tirkiyê "Mertala Firatê" hat bi nav kirin. Piştî vê yekê, Hêzên Sûriya Dêmokratîk, ku serkêşiya wan YPG dikin, bitenê çend xulek (deqqe) êrîşî Leşkerê Sûrî li Başûrê Cerablusê kir, ji sedema hevkariya wî bi leşkerê tirkî re û destûrdayîna wî ku bikeve nav Sûriyê. Leşkerê Azad ji YPG xwest ku ji Cerablusê derkevin.

Serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan got ku amanca vê tevgerê di heman (eynî) demê de Dewleta Islamî û YPG bûn û ku wê xwest ku ewlehiya Tirkiyê biparêze.

Tirkiye dixwaze ku penaberên sûrî ku ber bi Tirkiyê reviyane li vê navçeya ku di navbera Cerablus û Ezazê de ye û ku du navçeyên kurdî yên "kantonên" Kobanî û Efrînê ji hev dûr dixe, bi cî bike. Amanca wê ew e ku yekbûna axa kurdî nehêle.

Eger em werin berpirsiyarên amerîkî, wan ji YPG xwest ku nekevin nav Cerablusê, ji bo ku *"em tucar naxwazin ku şerrek di navbera Tirkiye û Kurdên Sûriyê de derkeve"*.

***Di 24 Tebax de jî***, Leşkerê Azad ê Sûrî (dijberiya libêral) jî, bi piştgiriya leşkerê tirkî ket nav Cerablusê û bangî xelk kir ku vegere. Û wî 7 YPG ragirtin û bi tawana "veqetînxwaz" li wan xist.

Mêdyayên partiya kurdî PYD daxuyand ku di ***28 Tebax*** de, firokeyên tirkî gundê El-Kûsa, 13 km li Başûrê Cerablusê, û gundê Emarnê bi tankan bombe kirin. Şervanên kurd, YPG, daxuyand ku leşkerê tirkî 4 ji wan ragirtin.

Çavdêrîgeha Sûrî ya Mafên Mirov, ku li Londonê ye, got ku bombekirinên firokeyên tirkî bûn sedema mirina 35 sîvîlan.

*(rudaw.net, avestakurd.net, 24-29.08.2016)*

***Berteka (rêaksyon) partiyên kurdî yên Tirkiyê***

Piştî ketina leşkerê tirkî nav Sûriyê, partiyên ramyariyî (siyasî) yên cihê, yên Kurdistana Tirkiyê, weka PDK-Bakur, HUDA-PAR, PSK …, nerazîbûna xwe nîşan da.

***Di 29 Tebax de***, serokê PSK (Partiya Sosyalîst a Kurdistan), Mesud Tek, li Amedê (Diyarbekir) daxuyand ku Tirkiye naxwaze ku Kurdistana Sûriyê bibe yek (ew di 3 perçeyan de dabeş bûye : Cezîrê, Kobanî û Efrîn) û bangî wê kir ku ji Cerablusê derkeve.

*(rudaw.net, 25.08.2016)*

***Berteka Tirkmenan***

Endamekî Tirkmenên Sûriyê got ku ewê ev tevger heta ku Tirkmen mafên xwe bistînin bajo (dewam bike). Û wî got jî ku mafê Dewleta Islamî û PYD nîn e ku dewletekê li Sûriyê ava bikin.

*(rudaw.net, 28.08.2016)*

***Berteka Amerîka û Fransa***

***Di 28 Tebax de***, fermandarê leşkerê tirkî daxuyand ku gehîneka (merhele) 2mîn a tevgera "Mertala Firatê" dest pê kir. Wî got ku di dema yek ji êrîşên li Başûrê Cerablusê de, 25 YPG hatin kuştin. Li gora çavkaniyên cihî, van firokeyên tirkî 40 sîvîl kuştin û 75 jî birîndar kirin.

Piştî vê yekê, wezîrên amerîkî û fransî yên karên derve hişyarî da Tirkiyê û got ku HSD (Hêzên Sûriya Dêmokratîk, ku YPGên kurdî tê de hêza sereke ne) şerrê Dewleta Islamî dikin.

Bi ser de jî, serokê amerîkî, Barak Obama, ji Tirkiyê xwest ku dev ji tevgerên li Başûrê Cerablusê û êrîşên li dijî Leşkerê Azad ê Sûriyê û HSD berde.

*(rudaw.net, 29.08.2016)*

**LEŞKERÊ TIRKÎ DIKEVE NAV KURDISTANA SÛRIYÊ**

***Kobanî***

***Di 25 Tebax de***, leşkerê tirkî bi çekkên giran êrîşî gundê Til Siriya, li Rojavaya kantona Kobanî, kir.

***Dêrik***

***Di 26 Tebax de***, vî leşkerê tirkî êrîşî bajarê Eyn Dîwer, yê girêdayî Dêrikê, kir.

*(rudaw.net, 26.08.2016)*

**DIJBERIYA SÛRÎ ÊRÎŞÎ KURDISTANÊ DIKE**

***Efrîn***

***Di 25 Tebax de***, merivên Hevalbendiya Neteweyî gundê Merenazê, yê girêdayî Efrînê, û gundê Şêx Îsa, girêdayî bajarokê Mari', bombe kirin.

Mêdyayên YPG daxuyand ku topxaneya tirkî gundê Mosaka, girêdayî Reco, bombe kir.

*(rudaw.net, 26, 28.08.2016)*

## DEWLETA ISLAMÎ 5 GIRTIYÊN KURD ÎDAM DIKE

***Di 26 Tebax de***, Dewleta Islamî di vîdêoyekê de daxuyand ku 5 girtiyên kurd ji aliyê zarokan hatin îdam kirin!

*(rudaw.net, 27.08.2016)*

## PYD FÊDÊRALÎSMÊ LI SÛRIYÊ DIXWAZE

***Di 03 Tebax 2016 de***, hev-serokê partiya kurdî PYD, Salih Muslim, ji ajansa Aranews re daxuyand ku partiya wî naxwaze ku ji Sûriyê veqete û dewletek li ser bingeha nijad (irq) ava bike, ku dewlet-netew êdî ne maye û ku Ewropa bi milyonan €, ji bo nehiştina sînoran, sarf dike. Û wî got jî ku ew sîstemeke federal tercîh dike û, weka nimûne, Brîtanya Mezzin û Ispanya, ku pirsên (problêm) wan bi Iskoçya, Îrlanda û Welatê Bask re hene, jimartin.

Muslim got jî ku serokatiya Beşşar El-Esed mafên Kurdan nas ne kirin û ku evên dawîn wan di nav dewleteke dêmokratîk de, ku hemî pêkhatiyên xwe dicivîne, dixwazin. Û wî got jî ku divê ku ev sîstema federal li ser bingeha "sêkularîsmê" (cihêkirina ol û dewletê) be.

*(rudaw.net, 03.08.2016)*

## ZANÎNGEHA QAMIŞLÎ LI XWENDEKARAN DIGERRE

***Di 04 Tîrmeh 2016 de***, Encumena Perwerde û Hînkirinê ya Kantona Cezîrê, ku ji aliyê partiya PYD li Kurdistana Sûriyê hatiye bi cî kirin, vekirina zanîngehekê li Qamişlî, mezzintirîn bajarên Kurdistana Sûriyê, daxuyand. Ew li akadêmîkên ku doktoraya wan heye digerre, ji bo ku tê de perwerdê bikin.

3 beşên din ên vê zanîngehê, ku di zanîngehên din ên sûrî de nîn in, jî hene : Zanistên (ilm) Jin, Jîngeh û Siyaseta Dêmokratîk.

Akadêmiya Celadet Bedir Xan ji bo ziman û wêjeya (edebiyat) kurdî, ku li Qamişlî ye, pêşwaziya namzedên vê zanîngehê dike. Ev zanîngeh bitenê ji aliyê Birêvebiriya Xweser hatiye nas kirin. Tu alî û tu dewlet wê nas nake.

*(rudaw.net, 08.08.2016)*

## ENCUMENA NETEWEYÎ YA KURDÎ LI JENÊVÊ: FÊDÊRALÎSM

***Ji 05 heta 08 Tîrmeh 2016***, Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS, ku tê de partiyên ne girêdayî PYD û PKK hene) li Jenêvê civiya. Li dawiyê, wê belgeyeke ku tê de federalismê li Sûriyê dixwaze weşand.

*(kurdwatch.org, 06.08.2016)*

## HUKÛMETEKE SÛRÎ LI ISTANBULÊ, BÊ KURDAN

***Di 11 Tîrmeh 2016 de***, Hevalbediya Neteweyî ya Şoreşa Sûrî û Hêzên Dijberiyê, ku mezzintirîn hevgirtina dijberiyê ye, li Istanbulê, li Tirkiyê, civiyan û hukûmeteke nuh a demkî (muweqqet), ku ji 8 wezîran ava bûye, damezrand. Postê (cî, wezîfe) alîkarê serokwezîr ji namzedekî ji Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS) re hat hiştin. Vê Encumnê di 13 Tîrmeh de biryar stend ku beşdar nebe avakirina vê hukûmetê, ji sedema tê de nebûna jinan û endamên komên cihê yên êtnîkî û olî. Rexneya duyemîn a ENKSê ew bû ku ciyê texmînkirî yê vê hukûmetê li navçeyeke ku ji aliyê Dewleta Islamî hatiye çavdêrî kirin e.

*(kurdwatch.org, 03.08.2016)*

## HEVALBENDIYA NETEWEYÎ YA SÛRÎ LI ISTANBULÊ RASTÎ AMERÎKIYAN TÊ

***Di 10 Tebax 2016 de***, Hevalbendiya Neteweyî ya Sûrî ya jorîn, bi serokatiya Enes El-Ebdê, li Istanbulê rastî şandê taybetî yê amerîkî ji bo Sûriyê, Michael Retney, û şanda wî hat. Wan rewşa Helebê û giftûgoyên bi Amerîka û Rûsya re giftûgo kirin. Ew li hev hatin ku divê ku sîvîl bên parastin û ku dorpêçkirina bajar ji aliyê kî be nema tê pejirandin (qebûl kirin).

El-Ebdê got ku divê ku Encumena Ewlehiyê ya UNê çareyan bibîne û ku Sûriya pêşerojê divê ku bê Beşşar El-Esed be.

*(rudaw.net, 11.08.2016)*

## PYD LI DIJÎ KURDÊN DIN

***Ibrahîm Biro, serokê ENK-Sê, tê sirgûn kirin***



***Di 13 Tebax 2016 de***, Asayişa Qamişlî **Ibrahîm Biro**, serokê ENK-Sê, ragirt û ew sirgûn (nefî) kir Kurdistana Iraqê! Wî got ku eger ew wî perçe perçe bikin jî, ewê vegere. Gelek kes li dijî vê kirinê derketin.

***Di 15 Tebax de***, Biro ji aliyê serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, hat pêşwazî kirin. Evê dawîn bi tundî kirina PYD tawanbar kir û ew bi antî-dêmokratîk û antîneteweyî bi nav kir.

*(rudaw.net, avestakurd.net, 12,14,15.08; kurdwatch.org, 18.08.2016)*

***34 berpirsiyarên ENK-Sê tên ragirtin***
***Di 16 û 174 Tebax de***, Asayişê 34 berpirsiyarên partiyên PDK-S û PYKS "Yekîtî" li navçeyên cihê yên Kurdistanê ragirtin. Piştre, yek ji wan hat azad kirin.
*(rudaw.net, 17.08.2016)*

***ENK-S rastî 5 konsulan li Kurdistana Iraqê tê***
***Di heman van rojan de, 16 û 17 Tebax,*** piştî van ragirtinan, şandeke ENK-Sê, bi serokatiya Ibrahîm Biro, li Hewlêrê rastî 3 konsulên Amerîka, Fransa û Tirkiyê hat, ji bo ku wan li ser kirinên PYD agahdar bike. Ewê rastî konsulên Brîtanya Mezzin û Rûsya jî bê.
*(rudaw.net, 17.08.2016)*

***Xwepêşandanên riswakirinê li dijî PYD***
Piştî kirinên jorîn ên Asayişê, gelek xwepêşandanên riswakirinê (protêsto) li bajarên cihê yên Kurdistana Sûriyê bûn.
*(rudaw.net, 18.08.2016)*

***Efrîn***
***Di 23 Tîrmeh de***, servîsên ewlehiyê yên partiya kurdî PYD, Asayiş, Serbest Xelîl û Nezîr Berekat, endamên PDK-Sê, revandin. Ji berê jî, di 15 Tîrmeh de, wan 4 Kurd, Mûsa, Riyad Ehmed, Xalid Mûsa Oskan û Şirû Mennan Ehmed, revandi bûn. Ev yek li şîna stranbêjê navdar Bavê Selah, ku tê de ala kurdî hati bû bilind kirin (li bultena me ya buhurî binêre) de.

***Di 31 Tîrmeh û 05 Tebax de***, Asayişê çend gundên Efrînê dorpêk kirin, ji bo ku cuhanan bi zorê bibe leşkeriya neçarî (xizmeta eskeriyê ya icbarî).
*(kurdwatch.org, 13.08.2016)*

***Di 07 Tebax de***, Serbest Xelîl û Nezîr Berekat hatin azad kirin.
*(kurdwatch.org, 10,25.08.2016)*

Çalakvaneke navçeya Efrînê ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku hêzên Birêvebiriya Xweser (yên partiya PYD) li bajarê Basûtê belav bûn û dest bi kampanyake lêgerîna cuhanên ku ji gundên xwe, ji leşkeriya neçarî, reviyane, kir. Wê got ku ev hêz li xalên çavdêriyê yên riyan bi cî bûne û hatûçûnê di navbera Efrîn û gundan de qedexe kiriye.
*(rudaw.net, 04.08.2016)*

***Di 28 Tebax de***, li gora daxuyaniyeke nivîskî ya ENK-Sê, Asayiş ket nav hemî malên bajarokê Reco û ji cuhanan xwest ku xwe bigihînin wê. Bi ser de jî, wê hin endamên PDK-S û ENK-Sê bi çav kirin û kesên ji gundên Beslê, yê girêdayî Şêrawa, ragirtin.
*(rudaw.net, 29.08.2016)*

***Sînorê Kurdistana Iraqê***
***Di 07 Tebax 2016 de***, Asayişê 10 karmend li xala sînorî ya Sêmalka, li Kurdistana Iraqê, ragirtin, ji bo ku wan bibe leşkeriya neçarî.
*(rudaw.net, 07.08.2016)*

***Qamişlî***
***Di 11 Tebax de***, mîlîtanên partiya PYD êrîşî buroya partiya PDK-Sê kir û ji Asayişê xwest ku wê bigire. Piştre, wan êrîşî buroya Partiya Yekîtî kir. Li ser dîwarên derve, wan duruşmên (slogan) li dijî serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, û "Xayin" li ser la kurdî, nivîsîn (PYD ala kurdî ku ji aliyê hemî Kurdan hatiye nas kirin napejirîne. Ew ala PKKê nas dike).

Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê (ENK-S) li dijî van êrîşên buroyên endamên xwe riswa (protêsto) kir.
*(avestakurd.net, 13.08; kurdwatch.org, 18.08.2016)*

***Di 15 Tebax de***, Asayiş ket nav buroya partiya PDK-Sê û 7 kesên ku tê de bûn, endamên polîtburo û encumena navendî ya vê partiyê jî di nav wan de, revandin.

***Di heman rojê de***, Asayişê ji kêmasî ve 9 endamên partiya Yekîtî li Amûdê û Qamişlî revandin. Hemî beşdar bû bûn şîna pêşmergeyekî ku di şerrê li dijî Dewleta Islamî de hati bû kuştin.
*(kurdwatch.org, 21.08.2016)*

***Serê Kaniyê***
Cuhanên PYD (Ciwanên Şoreşger) êrîşî buroya ENK-Sê kir, ala kurdî jê derxist û ew şewitand! Ew ji aliyê Asayişê hati bûn parastin.
*(avestakurd.net, 13.08; kurdwatch.org, 18.08.2016)*

***Parêzgeha Cezîrê***
***Di 15 Tebax de***, Encumena Çapemeniyê ya Kantona Cezîrê ji rojnamevanan re qedexe kir ku reportajan li ser wê, berê ku destûra wê bistînin, bikin. Vê encumenê yasayek li ser vê yekê di 19 Kanûn 2015 de derxisti bû.
*(kurdwatch.org, 22.08.2016)*

***Di 16 Tebax de***, Encumena Neteweyî ya Kurdî li Tirbê Sipî, Amûdê, Dirbêsiyyê û Tel Temrê xwe pêşan da, ji bo riswakirina (protêsto) revandina berê rojekê ya siyasiyên kurd. Asayişê êrîşî xwepêşandiyan li Dêrik û Tirbê Sipî kir, gulle li hewa avêtin û ew belav kirin.

Li hemî xwepêşandanan, Asayişê kes ragirtin. Di 15 û 16 Tebax de, 37 kes hatin ragirtin.

**SEROKWEZÎRÊ TIRK LI DIJÎ PYD**
Serokwezîrê tirk, Binali Yıldırım, ji rojnameya Kararê re daxuyand ku borana (krîz) sûrî divê ku were çare kirin, ku axa sûrî bê parastin û ku ewê hukûmeta wî nehêle ku PYD tê de dewleteke serbixwe ava bike. Û wî got jî ku piştî azadkirina wê, divê ku dewleta sûrî ne li

ser bingeheke olî û êtnîkî bê ava kirin, lê ku divê ku ew bibe ya hemî pêkhatan. Û wî got jî ku divê ku Sûriya nuh bê serokê nuha Beşşar El-Esed bibe û ku pirsên penaberan li Sûriyê divê ku werin çare kirin.

Yıldırım rasthatina nuh a serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan û serokê rûs Vladimir Putin, û seredana wezîrê îranî yê karên derve li Tirkiyê anîn bîran.
*(rudaw.net, 15.08.2016)*

**10 PARTIYÊN KURDISTANA IRAQÊ LI DIJÎ PYD**
***Di 17 Tebax de***, 10 komên ramyariyî (siyasî) yên Parlementa Kurdistana Iraqê, ku partiyên kurdî, tirkmenî, suryanî, kildanî û ermenî dinimînin (temsîl dikin), daxuyaniyeke hevrayî li ser rewşa dawîn a Kurdistana Sûriyê weşand. Wan tê de got ku PYD pergaleke (système) totalîter (dîktator) ava kiriye, ku ew partiyên din ên ramyariyî napejirîne (qebûl nake) û berpirsiyarên wan radigire, navê "xayin" datîne ser her kesekî ku ne pê re ye û wî bi girtin û êşkencê tehdîd dike …
*(rudaw.net, 17.08.2016)*

**REWŞA BAJARÊN EREBÎ**

***Heleb***
Şerr di navbera leşkerê sûrî û komên dijiberiyê de li Helebê, bajarekî girîng li Bakurê Sûriyê (ew ne li Kurdistanê ye, lê tê de 2 taxên kurdî yên girîng hene), dajo (dewam dike). Bi alîkariya firokeyên rûsî û mîlîsên şîî yên îranî, iraqî, lubnanî û afxanî, leşkerê sûrî Bakurê Helebê ji Dewleta Islamî rizgar kir. Di heman (eynî) demê de, dijberiya sûrî ya libêral, ku ji komên cihê pêk hatiye, daxuyand ku wê, bi riya tunêlekê, çend avahiyên leşkerê sûrî teqandin (ev dijberî di heman demê de şerrê islamiyan û rejîma sûrî dike). Û wê got jî ku wê 23 Çekdarên Hizbullaha lubnanî û çend serbazên leşkerê sûrî ragirtin.

Bi dehan sîvîl, ku ji wan jin û zarok, bi bombekirinan hatin kuştin. Ji du mehan de, taxên Rojhilata Helebê hatine dorpêç kirin û rewş tê de her ku diçe xerabtir dibe. Rûniştevan xwepêşandanan, bi alîkariya dijberiyê, pêk tînin û duruşman (slogan) li dijî rejîma sûrî davêjin. Ew vekirina korrîdoreke mirovî dixwazin, ji bo ku rewşa wan gelek xerab û ew di nav kavilan (ciyên xerabe) de dijîn.

***Di 08 Tebax de***, UNê daxuyand ku 2 milyon Sûrî li Helebê di metirsiyê (tehlike) de ne û bangî *"rawestaneke mirovî"* û imkana ketina nav bajar kir, ji bo ku alîkariya mirovî bigihêje rûniştevanên wê.

Banga UNê li Amerîka deng da û eva dawîn got ku *"dema ku taktîkên dorpêçkirinê ji aliyê rejîmê bi qesdî tên bi kar anîn, ji bo bêparkirina (mehrûmkirin) xelk ji xwarin û tiştên bingehî ji bo jiyana wî, ew dibin tawana (cinayet) şerr"*. Balyoza Amerîka li UNê, Samantha Power, got : *"Em bangî rejima Esed dikin ku dorpêça xwe ya kujer li hemî bajar û bajarokan, ku tê de van taktîkên hov ên mirin û radestbûnê dike, rake"*.
*(rudaw.net, 02.04,05,09.08.2016)*

***Fille ji Idlibê direvin***
Piştî şerrê Idlibê, rûniştevanên wê yên fille reviyan derveyî Sûriyê. Tê de bitenê kesên pîr mane. Çekdarên dijberiya sûrî, ku ev bajar ji rejîma sûrî rizgar kir, dibêjin ku firokeyên rûsî dêrên wî têk birin (xerab kirin).
*(rudaw.net, 11.08.2016)*

**SÛRIYE ÇEKKÊN KÎMYAYÎ BI KAR TÎNE**
Çavdêrên bijîjkî (tibbî) û hêzên sîvîl ên parastinê daxuyand ku 4 bermîl ji hêlîkoptêrên sûrî li ser taxa Zubêdî, ya Helebê, hatin avêtin û 4 kes, ku ji wan 2 zarok, kuştin û 55 kes jî birîndar kirin. Li gora wan, hukûmetê "gaza klor" xisti bû nav van bermîlan.
*(rudaw.net, 11.08.2016)*

UNê vekolînek li ser babeta van çekkên kîmyayî kir. Di rapporeke 95 rûpelî de, tevî ragihanên (annexes) têknîkî, wê got ku leşkerê sûrî ji kêmasî ve 2 êrîşên kîmyayî kirin û ku Dewleta Islamî gaza xerdel bi kar tîne.

Vekolîneran encam da ku hîn di 21 Nîsan 2014 de, hêlîkoptêrên leşkerî yên sûrî gaza klorê li ser du ciyên parêzgeha Idlibê (navçeyeke erebî) belav kiri bû û ku di 21 Tebax 2015 de, Dewleta Islamî gaza xerdel li Mari' (parêzgeha Helebê) bi kar anî bû.

UNê rappora xwe şand Encumena Ewlehiyê ya UNê, ji bo ku ew di 30 Tebax 2016 de bê giftûgo kirin.
*(rudaw.net, 25.06; Metro, 26.08.2016)*

**PENABERÊN SÛRÎ DIREVIN EFRÎNÊ**
***Ji 25 Gulan 2016 de***, pêlên penaberan di reva xwe de ji navçeyên sûrî yên erebî yên cihê ber bi Efrînê, li Kurdistana Sûriyê, dewam dikin. Yek ji berpirsiyarên navçeya Efrînê got ku ev kes ji El-Bab (li Bakurê Helebê), Cerablus, Reqqa, Dêr El-Zor û Ebû Kemal tên. Ew dibêjin ku ji Dewleta Islamî reviyane û hin rûniştevanên El-Babê jî aşkere dikin ku hin endamên malbatên wan ji aliyê vê rêxistinê weka mertalên mirovî hatine bi kar anîn.
*(rudaw.net, 17.08.2016)*

# NÛÇEYÊN NAVNETEWEYÎ

## EUROPOL

***Rapporek li ser Dewleta Islamî***

Rêxistina Polîsên Ewropî, Europol, rapporek weşand û tê de got ku şervanên Dewleta Islamî "zewacên cihadî" dikin, ku 31.000 jin ji wan ducanî (hamile) ne û ku ji kêmasî ve 50 zarokên brîtanî li bal wan hene.

Europol got jî ku 5.000 welatvanên ewropî pêwendiyên wan bi Dewleta Islamî re hene û ku ew çûne Iraq û Sûriyê. Wê got jî ku nifşê (cîl) nuh ê Dewleta Islamî ji bo welatên Ewropa metirsî (tehlike) ne û ku şervanên ku ji Iraq û Sûriyê tên Ewropa bi hêsanî (bi rehetî) pere ji vê rêxistinê re berhev dikin.
*(rudaw.net, 02.08.2016)*

## AMERÎKA

***Dewleta Islamî hîn jî metirsîdar e***

Piştî civînekê bi Pentagonê (wezareta parastinê) re, serokê amerîkî Barak Obama li konfêranseke çapemeniyê got ku Dewleta Islamî li Iraq û Sûriyê gelek qels bûye û gelek ji bingehên xwe hunda kirine, ku loma ew êrîşan li derve dike, lê ku li dawyê ewê hilweşe.
*(rudaw.net, 04.08.2019)*

***Donald Trump : Saddam Huseyn têrrorîst kuştin!***

***Di Tîrmeh 2016 de***, namzedê komariyan li hilbijartinên serokatiyê yên amerîkî, Donald Trump, di yek ji axaftinên xwe de got ku Saddam Huseyn bitenê çend gazên piçûk li ser têrrorîstan avêtin! *"Saddam thorws a little gas, everyone goes crazy"* (Saddam gazeke piçûk avêt, herkes dîn bû).

Parêzgarê Halabca (ku tê de ev gazên kîmayî hati bûn avêtin û di çend xulekan de 5.000 kes miri bûn), Abdullah Newrolî, jê re nameyek şand û tê de got ku divê ku ew buhurandinê (efû) ji xelkê vî bajarî û ji qurbanan bixwaze. Û wî got jî ku di kampanya Enfal de, ku ji aliyê Saddam Huseyn li dijî Kurdan di 1988-89 de hati bû ajotin, ji 180.000 kuştî bêtir hebûn.
*(rudaw.net, 09.08.2016)*

***Donald Trump ajansa kurdî Rûdawê boykot dike***

Piştî belavkirina gotinên jorîn yên Donald Trump li ser gazên kîmyayî li Kurdistana Iraqê ji aliyê Rûdawê, Trump ew boykot kir.

Nûçegihanê Rûdawê li Amerîka, Abdullah Namo, got ku Trump rojnameya amerîkî ya navdar Washington Post jî boykot kir.
*(rudaw.net, 10.08.2016)*

## U.N.

***Lîsta rêxistinên tawanbarkirî***

UNê lîsteke partiyên ramyariyî yên kurdî yên tundrew (extremist) velav kir : PKK, YPG (baskî sûrî yê PKKê), Leşkerê Sûrî yê Azad û Heşdî Şe'bî (partiyeke şîî li Iraqê). Ew wan bi pelixandina mafên zarokan û bi êşkence tawanbar dike.

Di destpêkê de, navê Erebistana Suûdî jî di nav vê lîstê de hebû, lê piştre ew jê hat derxistin. Ev yek gelek bertekên (rêaksyon) nerazîbûnê derxistin.
*(rudaw.net, 04.08.2016)*

## FILISTÎN

***Keçeke piçûk a kor kurdî hîn dibe!***

Keçeke piçûk a filistînî, Hena Umer, 15 salî, ku li Tel Kerm, li Filistînê dijî, zimanê kurdî bi riya torên mêdyayî yên Rûdawî hîn bû. Çend hevalên wê yên kurd hene û ew sirûda neteweyî ya kurdî "Ey Reqîb", û çend stiranan, distirê.
*(rudaw.net, 04.08; avestakurd.net, 05.08.2016)*

## ALMANYA

***Kurdên Sûriyê xwe pêşan didin***

Şaxa Ewropa ya Encumena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê (ENK-S) li Mannheimê xwepêşandanek pek anî, ji bo riswakirina (protêsto) du teqînîn ku li Qamişlî, di 27 Tîremh 2016 de, bûn û ku tê de 62 kes hatin kuştin û 100 jî birîndar bûn (li bultena me ya buhurî binêre). Ew alîkarî ji bo malbaên qurbanan berhev dike. Yek ji çalakvanên wê, Kurdistan Elî, ji ajansa Rûdawê re got ku dema ku li Helebê êrîş dibin, rêxistina wê peyamên alîkariyê dişîne, lê ku dema ku Qamişlî tê êrîş kirin, ên ne Kurd tutiştî nabêjin.
*(rudaw.net, 07.08.2016)*

## KURDISTANA IRAQÊ

***Berpirsiyarekî mezzin ê DAIŞê tê kuştin***

Encumena Ewlehiya Herêma Kurdistanê daxuyand ku di ***11 Tebax*** de, yek ji serokên mezzin ên Dewleta Islamî, Samî Jasim Muhammed, ku bi navê Hac Hemed tê nas kirin, û yek ji hevkarên wî, li derdora Qaimê, li sînorê Iraq û Sûriyê, hatin kuştin. Ev yek di tevgereke Birêvebiriya Giştî ya Dijî-Têrrorîsmê (CTD) û hêzên taybetî yên Amerîka de.
*(rudaw.net, 11.08.2016)*

***Di 26 Tîrmeh de***, "Emîrekî" Dewleta Islamî, Hafiz Seîd, berpirsiyarê Afxanistan û Pakistanê, li Afxanistanê ji aliyê firokeyên amerîkî hat kuştin.
*(rudaw.net, 13.08.2016)*

**AMNESTY INTERNATIONAL**

***18.000 kes li zîndanên sûrî hatine kuştin***
Amnesty International rapporeke nuh weşand û tê de got ku di navbera salên 2011 û 2015 de, 18.000 kes li zîndanên sûrî hatin kuştin, piştî ku hatin êşkence tecawuza cinsî kirin. Wê ev kirin tawana li dijî mirovahiyê bi nav kirin.
*(rudaw.net, 18.08.2016)*

**DEWLETA ISLAMÎ Û KURD**

***Welatên Rojhilata Navîn ji Kurdan ji Daişê bêtir ditirsin***
Nivîskarê ereb, Xessan Şirbil, di rojnameya El-Heyat de gotarek li ser xwestina serxwebûnê ya Kurdistana Iraqê nivîsî. Wî tê de got ku Îran, Sûriye, Iraq û Tirkiye ji Dewleta Islamî bêtir, ji Kurdan ditirsin, ji bo ku Dewleta Islamî mehkûm bûye ku têk biçe, ji bo ku ew bixwe gora xwe dikole, lê ku ewê Kurd bimînin.

Şirbil got ku dema ku serokê tirk Erdoğan rastî serokên Rûsya û Îranê hat, wan pirsa kurdî giftûgo kir. Û wî got jî ku beşek ji van welatan Kurdan weka bombeyeke ku ewê biteqe dibînin.
*(rudaw.net, 22.08.2016)*

**ÎTALYA**

***Hevaleke Kurdan wefat kir***
***Di 26 Tebax 2016 de***, hevala îtalî ya Kurdan, Gratizela Bronzini, ji nexweşiyeke giran wefat kir. Di 1991 de, piştî serhildana mezzin a Kurdistana Iraqê li dijî Saddam Huseyn, wê nexweşxaneyek û dibistanek li Qela Dizê, tevî mêr û her du xuşkên xwe, vekirin. Ew û mêrê wê yekemîn kesên biyanî bûn ku beşdarî yekemîn civîna Parlementa Kurdistanê bû bûn. Wan bi xwe re rojnamevanekî hollandî jî anî bû.
*(rudaw.net, 26.08.2016)*

**TIRKIYE**

***Xwestina kirina tevgerekê li Iraq û Sûriyê***
***Di 29 Tebax de***, serokê tirk Recep Tayyip Erdoğan li Dîlokê (Antep) daxuyand ku welatê wî amade ye ku alîkariya xwe, ji bo şikandina Dewleta Islamî li Iraq û Sûriyê, pêşkêş bike. Û wî got jî : *"Loma em li Cerablus û Başîka ne. Eger pêwîst bibe, emê alîkariya xwe bibin navçeyên din jî".*

Wezîrê tirk ê karên derve, Mevlut Çavuşoğlu, rastî wezîrê hollandî yê karên derve, Bert Koenders, hat. Piştre, wî bersîvên pirsên rojnamevanan dan û li ser bajarê sûrî yê Cerablusê peyivî. Wî got ku ewê Dewleta Islamî bitenê bi bombekirinên ezmanî nikaribe bê şkestin û ku ewê Tirkiye karibe bi hêzên bejayî (erdî) hem Sûriyê û hem Iraqê ji vê rêxistinê paqij bike. Û wî got jî ku *"Di destpêkê de, divê ku YPG'ên kurdî xwe ji Munbicê bikişînin Rojhilata çemmê Firatê. Eger na, ewê bibin amanca me. Lê Erebên Munbicê û yên derên din ne manaca me ne".*
*(rudaw.net, 29.08.2016)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ LI CIHANÊ

**HUNERMENDEKÎ EREB Ê SÛRÎ HEYRANÊ KURDAN E**
Ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê li Şamê hevpeyvînek bi Eymen Zêdan, ku di heman demê de aktor, fîlmçêker, siyasî û pêşkêşkerê têlêvîzyonê ye, re kir. Wî got ku heyraniya wî ji Kurdan re gelek heye, ji bo ku ew gelekî mezzin ê taybetî ye û girêdayî jiyanê ne. Û wî got jî ku ew gelek hunermendên kurd nas dike û ku ew hevalên wî ne.
*(rudaw.net, 21.08.2016)*

**KURDISTANA IRAQÊ**

***Yezîdî cêjna Lalişê pîroz dikin***
Weka her sal, oldarên kurd ên yezîdî cêjna "Çileya Havînê" li perestgeha Lalişê pîroz kir. Ji sedema şerrê li dijî Dewleta Islamî, wan bitenê merasîmeke olî pêk anî û cêjna ku her sal piştre tê kirin rakir (ne kir).
*(rudaw.net, 02.08.2016)*

***Encumeneke Ola Zerdeştî hat pêk anîn***
***Di 09 Tebax 2016 de***, rêxistina Yesna, ku di 17 Hezîran 2015 de ava bû bû, bi awakî fermî avakirina Encumena Ola Zerdeştî, ola kevnar a kurdî, ya berê Islamê, li Hewlêrê daxuyand. Wê got ku ew hêvî dike ku ev yek alîkariya pêşveçûna neteweyê kurd, di warê bihevrejiyana olî û neteweyî li Kurdistanê de, bike.
*(rudaw.net, 09.08.2016)*

***Peykerê helbestavnekî mezzin li Suleymaniyê***
***Di 04 Tebax 2016 de***, Komelgeha Perwerdeyî ya Margaret pêşangeheke tobloyan li ser helbestvanê kurd ê navdar Nalî pêk anî û peykerê wî li Parka Nalî, li bajarê Suleymaniyê, danî.
*(rudaw.net, 04.08.2016)*

***Mamostayekî amerîkî dibe serokê zanîngeha Suleymaniyê***

***Di 08 Tebax de***, mamosteyê amerîkî Bruce Walker Ferguson bû serokê zanîngeha Suleymaniyê. Bawernameyên (diploma) wî di yasaya navnedetewî û perwerdeyê de, ji zanîngeha Harvard, hene û ew sernivîskarê kovara huqûqî "Harvard Law Review" bû. Ji berê, endamê Navenda Navneteweyî ya Zanist (ilm) û Siyaseta Têknolojiyê, ya zanîngeha George Washington, bû.

Zanîngeha Suleymaniyê di 2007 de ava bû bû.
*(rudaw.net, 14.08.2016)*

***Ji 3.000 ciyên dîrokî bêtir li Kurdistanê***

***Ji 20 salan de***, 3.125 şûnwarên dîrokî li Kurdistanê hatine tomar (qeyd) kirin. Bi dehan zanîngeh û pisporên biyanî tê de lêkolînan dikin. Lê heta nuha, rêberiya geştiyaran (tûrîst) tê de hîn baş ne hatiye kirin.
*(rudaw.net, 21.08.2016)*

***Kela dîrokî ya Şêrwane***

Kela Şêrwane li Başûrê bajarokê Kelarê ye û ji sedsala 19mîn (1866-1874) maye. Ew ji aliyê mîrê kurd Muhammed Paşa Keyxusrew Begê Caf hatiye ava kirin. Tê de 8 jûre (ode) hene û tê bermayiyên kevnar ên Kelarê hatine raxistin.
*(rudaw.net, 23.08.2016)*

***Fîlmeke kurd li ser Dewleta Islamî***

Komeke cuhanên kurd li Hewlêrê fîlmeke kurt li ser Dewleta Islamî çêkir û masrafa wê bitenê 150 dolar bû! Ev fîlm li gundê Şorce, li navçeya Mexmûrê, hat çekirin û navê wê "Lîstika Dijmin" e.

Kişandina fîlmê gelek zor bû, ji bo ku ew li nêzîkî bingehên Dewleta Islamî hat çêkirin. Yaneyê (équipe) nêzîkî 15 demjimêran li bin tavê kar kir. Fîlmçêker, Zanyar Edanan Osman, got ku ew dixwaze ku fîlma wî beşdar bibe fêstivalên navneteweyî yên fîlman.
*(rudaw.net, 23.08.2016)*

**HOLLANDA**

***Jineke hollandî stranên kurdî "zaza" hîn dibe***

Di çarçeveya projeya "Music Generations" de, Nadia Visser, tevî 25 hevlaên xwe, çû Dersîmê (Tüncelî), li Kurdistana Tirkiyê, û tê de stranên kurdî (bi zaravê zaza) hîn bû. Ew dixwaze ku
dîrok, ziman û stranên kurdî hîn bibe.

Visser û hevalên wê rastî muzîkvan Ahmet Aslan û Metin Kahraman hatin, û piştre çend konsêr pêk anîn.
*(rudaw.net, 03.08.2016)*

**KURDISTANA SÛRIYÊ**

***Dewlemendiya çandinî ya Efrînê***

Navçeya Efrînê bi dewlemendiya sirûşt (tebîet) û çandina xwe, bi taybetî ya zeytûnan, navdar e.

**Darên zeytûn** : 18 milyon darên zeytûn hene û jê salane 270.000 ton zeytê zeytûn tên derxistin.

**Darên hinar** : 750.000 dar. 15.000 ton berhem.

**Darên din** : Gwîz, behîf, hijîr, tirî, simaq û silq.

**Gennim û ceh** : 10.000 hêktar. 10.000 ton.

**Ên din** : Nok, nîsk, kemûn …

**Heşînayî** : Heşînayiyên havîn û zivistanê.

Di 3 salên dawîn de, navçeya Efrînê, ji sedema şerr, piraniya caran dorpêçkirî bû. Lê hebûna van berhemên cihî (mehellî) alîkariya xelk kir ku karibe bijî.
*(rudaw.net, 03.08.2016)*

***Xelat ji helbestvanekî re***

Yekîtiya Nivîskarên Kurdistana Sûriyê xelata xwe ya 2016 da helbestvanê kurd Ehmed Şêx Salih. Ev hebestvan di 1935 de li Eyn Dîwerê, li Kurdistanê, bû bû. Ew yekemîn mamosteyê dibistana gundê xwe, piştî derketina Fransiyan ji Sûriyê, bû. Hîn di zarokatiya xwe de, wî helbest dinivîsîn û piştre stranbêjên kurd ên navdar, weka Muhemmed Şêxo û yên din, ew stiran. Wî pirtûkeke helbestan weşand û tê de, bi awayê helbestan, li ser destpêka hebûna mirov û girîngtirîn bûyerên li cihanê peyivî. Nuha, ew li Dêrikê dijî.
*(rudaw.net, 16.08.2016)*

***Romanek li ser Kobanî***

Romannivîsê navdar ê kurd, Jan Dost, pirtûkek li ser Kobanî, Bajarê Şehîd, ku hovîtiyên Dewleta Islamî kişandin (li buletenên me yên buhurî binêre), nivîsî. Dost gelek roman û berhevokên helbestan nivîsîne.
*(avestakurd.net, 19.08.2016)*

**AMERÎKA**

***Xelat ji fîlmçêkerekî kurd re***

Fîlma "El Clasico", ya fîlmçêkerê ji Kurdistana Îranê, Helkewt Mustafa, li Chicago Xelata Baştirîn Filma Biyanî "Best Foreign Fiction" stend. Fîlm du kesên bejnkurt nîşan dide. Ew rikberî (munafese) li ser dayîna sandalekê (klaş, solên vekirî) ji futbolciyê Real Madrid, Christiano Ronaldo, re dikin. Ev celeb "klaş" bi taybetî li navçeya Hewramanê tê çêkirin.
*(rudaw.net, 04.08.2016)*

## BRAZÎL

***Mêdalya zêrîn ji Kurdekî Îranê re li Olympiada Rio***




**Kiyanûş Rustemî**, Kurdekî Îranê, 26 salî, mêdalya zêrîn a weznên giran stend. Di fîlmeke vîdêo de, wî got : *"Pîroz be ji hemî gelê kurd re"*.

Di 2010 û 2011 de, wî du caran mêdalyayên zêrîn, di yariyên cihanî yên atlêtîsma cuhan de, stendi bûn. Di 2011 de, ew baştirîn sportîfê cuhan hati bû bi nav kirin.

Kiyanûş li Kirmanşahê bûye û bê "coach" gihajt Rio. Wî got ku ew hergav tenê rahênanê li kampekê dike û ku tukes ew ne dîti bû.
*(rudaw.net, 06 û 16.08.2016)*

***2 Kurdên din li Olympiada Rio de Janeiro***
Lîzvanê fûtbolê, Şêrko Kerîm, di nav yaneya neteweyî ya iraqî de, beşdar bû Olympiada Tebax 2016. Kurdkî din ê Iraqê, Kovan Hesen, ku kêmendam (handicapé) ye, jî beşdar bû lîza avêtina riman.

Di salên buhurî de, Kurd beşdar bû bûn Olympiadan : Di 1984 de, li Los Angeles, Muhammed Yasîn di yariya weznên giran de 4mîn bû. Di 1992 de, li Barcelona, Serheng Ebdul-Xaliq mamosteyê 5 werzişvanên (sportîf) iraqî di weznên giran de bû. Bi ser de jî, 2 Kurdên din, Muhammed Salih û Muhammed Tahir, beşdar bû bûn lîzên Barcelona. Di 2012 de, Ismaîl Mewlud beşdar bû bû Olympiada Londonê.
*(rudaw.net, 06, 13.08.2016)*

## UNICEF

***Lîzvanek seredana kampên penaberan li Kurdistana Iraqê dike***
Lîzvanê (acteur) navdar ê fîlma "Star Wars", Ewan Gordon McGregor, weka balyozê (sefîr) UNICEFê, çû Hewlêrê. Wî tê de seredana kampên penaberên Kurdistana Sûriyê kir.
*(rudaw.net, 06.08.2016)*

## ÎTALYA

***2 Kurd di yariyekê de 2mîn in***
***Ji 02 heta 06 Tîrmeh 2016***, Îtalya yariyek (musabeqe) li ser projeyeke avakirina parkan (bexçe) pêk anî. 300 xwendekarên doktora û masterê, ji 70 zanîngehên cihanê, beşdarî wê bûn.



Ji nav namzedan, du Kurdên Iraqê**, Dîdar Kemal** û **Sîpan Xelîl**, xwendekarên zanîngeha Qibrisê, projeyeke parkekê, tevî xwendekareke hollandî, amade kir. Ew 2mîn hatin hilbijartin.
*(rudaw.net, 08.08.2016)*

## NORVÊJ

***Cuhanekî 16 salî dibe stêrka futbolê***
Dilawer Wêsî Misto, 16 salî, ji navçeya Kobanî, Kurdistana Sûriyê, ye. Di 2015 de, ew, tevî malbata xwe, ji şerrê Dewleta Islamî reviya bû Norvêjê. Ew endamê yaneya futbolê "Yofk" e. Mêdyayên norvêjî jê re "Christiano'yê piçûk" dibêjin. Yaneyên futbolê yên welatên cihê, nemaze yên Almanya û Ingilterê, ku lîzvanên wan ên ji 18 salî kêmtir hene, dixwazin ku ew bibe endamê wan.
*(avestakurd.net, 08.08.2016)*

## MÎRIYÊN EREBÎ

***Fîlmçêkerekî kurd naxwaze ku fîlmekê li ser pêxember Muhammed çêbike***
Mîriyên Erebî yên Yekbûyî ji fîlmçêkerê navdar ê Kurdistana Îranê, Behmen Qobadî, xwest ku fîlmek li ser jiyana Pêxmeber Muhammed çêbike. Lê wî ev yek red kir û ji ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê re daxuyand ku ew vê babetê baş nas nake, ku projeyên wî li ser şervan û mêrxasên Kurdistanê hene. Û wî got jî ku ew vê babeta dawîn baş nas dike û ku ji bo çêkirina we ne pêwîst e ku biçe welatekî erebî.

Behmen Qobadî di 1969 de li Bane, li Kurdistana Îranê, bûye. Dema ku xwendekar bû, wî li radyo kar dikir. Di 12 saliya xwe de, wî, weka "amateur"ekî, xwe gihand komeke fîlmçêkeran û bi wan re fîlmên kurt çêkirin. Piştî kutahkirina xwendina xwe li Tehranê, li Dibistana

Bilind a Weşan û Rojnamevaniyê, wî dest bi kişandina fotoyan kir.

Ji 1995 heta 1999, wî 10 fîlmên kurt, ku xelat li yariyên neteweyî û navneteweî stendin, çêkirin. Yek ji wan, Jiyana li Mijê, xelata taybetî ya jurî, li fêstivala Clermont-Ferrand, li Fransa, stend.

Di 1999 de, ew bû assîstanê sereke yê fîlmçêker Ebbas Keyrustemî "Ewê Ba me hilde" û rola sereke di fîlma "Textê Reş" de, ya Samîra Maxmalbaf, lîzt.

Di 2000 de, li Fêstivala Fîlmê ya Cannes, li Fransa, fîlma wî "Dema Hespên Serxweş" 3 Xelat stendin : Xelata Zêrî, ya Baştirîn Kamêraya Sînema Cuhan û ya "PIPRESCI".
*(rudaw.net, 10.08.2016)*

***Stranbêjekî ereb dîmenên sirûşta Kurdistanê nîşan dide***

Stranbêje ereb Huseyn Jasmî, 37 salî, di albuma xwe ya dawîn de vîdêo-klîpekê nîşan da û tê de dîmenên sirûşta (tebîet) Kurdistana Iraqê, Kela dîrokî ya Hewlêrê û dîlaneke kurdî nîşan dan. Navê albuma wî "Em hemî Iraq in" (We are all Iraq) e.

Ev vidêo ji aliyê Kurdekî, Ala Ansarî, hat bi rê ve birin û li ciyên cihê yên Kurdistana Iraqê hat kişandin. Jasmî vekirina kampeke penaberên ku ji şerrê Iraq û Sûriyê reviya bûn kir.
*(rudaw.net, 20.08.2016)*

**KURDISTANA ÎRANÊ**

***Mala helbestvanekî navdar dibe muzexane***

Birêvebiriya şaredariyî ya bajarê Mahabadê mala helbestvanê navdar Hêmin Mukriyanî kir muzexane. Arşîv, destnivîs û tiştên helbestvan tê de hatine raxistin.
*(rudaw.net, 13.08.2016)*

**FRANSA**

***Pêşangehek li ser îdamên li Îranê***

Şaredariya Parîsê pêşangeheke taybetî li ser rêzeyeke îdamkirinên dijberên siyasî, ku ji aliyê hukûmeta îranî di salên 1980 de hati bûn kirin, pêk anî.

Di pêşangehê de foto û jînenîgariyên bi hezaran kesên ku ji aliyê dadgehên şoreşgerî yên îranî hati bûn îdam kirin hene. Û tê de tomarkirina (qeyd) gotinên alîkarê Ayatullah Xomeynî, Alî Montazarî, ku serokên vê şoreşa îranî rexne dikirin û ji wan re digot ku ewê rojekê weka canî bên bi bîr anîn, hene.

Di salên dawîn de, Îran ji aliyê UNê û rêxistinên mafên mirov, ji bo rêjeya (nisbet) bilind a îdamkirinên girtiyên siyasî, bê dadgehkirineke rast, tê rexne kirin.
*(rudaw.net, 25.08.2016)*

**OTRÎŞ**

***Konsêrek ji bo biserketina pêşmerge***

Koma muzîkê Skurdiya ji 15 hunermendên ji netewahiyên cihê ava bûye û ew ji aliyê 2 Kurdan, Rizgar û Dîlan Xoşnav, tê bi rê ve birin. Ên din ji welatên cihê ne : Otrîş (Nêmsa), Almanya, Hollanda, Fransa, Îtalya, Ermenistan, Brazîl …

Ji bo pîrozkirina biserketina hêzên pêşmerge li ser Dewleta Islamî, vê komê konsêreke mezzin li bajarê Gras pêk anî. Bi cillên kurdî, wê sirûda pêşmerge, û piştre stranan bi zimanên cihê stiran. Gelek kes beşdar bû bûn û bîlêt berê du mehan hati bûn firotin.
*(rudaw.net, 30.08.2016)*

*This newsletter is published in four languages: Kurdish, French, Dutch and English. It is written in Kurdish and French by Pervine Jamil, translated into Dutch by Pieter Gerits, Chirine Gerits and Nevine Gerits, and into English by Chirine Gerits. The layout is made by Pieter Gerits. Rênas Newrozî registered it on CD and put it on the Facebook of the Kurdish Bureau and on http://en.calameo.com/accounts/3601834. The paper version is also available at the library of the Kurdish Bureau that contains works in a dozen languages*






Vlaamse Gemeenschapscommissie Brussel